# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

9 772148 530008

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 84 27 Kanûn 2015 - 03 Çile 2016 basnews.com


Mîrê nenas ê helbesta kurdî:

## Şikoyê Hesen



R16





Barzanî:

# Wê gel biryara serxwebûnê bide

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, fermana destpêkirina prose ya referandûma serxwebûna Kurdistanê da. Amadekariyên referandûma ku ji ber sedemê êrişên DAIŞ'ê hatibû taloqkirin, wê di rojên dahatû de destpêbike. Barzanî ji sazî û lijneyên ku ew ê amadekariyên referandûmê bikin xwest ku dest bi karê xwe mijûl bibin. Barzanî derbarê mijarê de got, "wê gel biryara serxwebûnê bide."

Piştî hevdîtinên bi partiyên sivîl û pêkhateyên siyasî re ew ê referandûma ku pêngava beriya serxwebûnê ye bê kirin. Çav li rê ye ku referandûma serxwebûnê di nava çend mehan de encam bide. Tê çaverêkirin ku di rojên pêş de ew ê bi rayedarên YNK'ê û bi dû re jî li gel partiyên din ê siyasî jî danûstendin li ser awayê referandûmê bên kirin.

R02-3



R08-9

Dr. Elî Teter:

## Wê dinya rêz li serxwebûnê bigire

Endamê Serkirdayetiya PDK'ê Dr. Elî Teter pêkhatina referandûma serxwebûnê tekez kir û biryardariya gelê kurd wek mîsogeriya

## Kurd bi trawma ya şer re rûberû ne

"Şer û pevçûn bi xwe re mirin, kuştin, tîbûn û birçîbûnê tîne, kesên ku di nava şer û pevçûnan de dijîn, bê hêz û bê bawerî dibin, ev pevçûn bi taybetî jî jin û zarokan bê hêz dike, yên ku herî zêde mexdûr dibin jî ew in."



R11

## Ji konferansa kurd û îslamê banga agirbestê

R11

Osman Öcalan:

## Di redkirina ala neteweî de destê îranê heye

R12

## Zarok bê dibistan man

R14



# Li benda referandûmê



Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, fermana destpêkirina prose ya referandûma serxwebûna Kurdistanê da. Amadekariyên referandûma ku ji ber sedemê êrişên DAIŞ'ê hatibû taloqkirin, wê di rojên dahatû de destpêbike. Piştî hevdîtinên bi partiyên sivîl û hemû pêkhateyên siyasî re ew ê pêngava beriya serxwebûnê ev referandûm bê kirin.

Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, ji bo amadekariyên referandûma serxwebûnê biryar da û saziyên eleqeder erkdar kir. Barzanî ji sazî û lijneyên ku ew ê amadekariyên referandûmê bikin xwest ku dest bi karê xwe bikin. Barzanî derbarê mijarê de got, "wê gel biryara serxwebûnê bide." Amadekariyên serxwebûnê yên ku di sala 2013'dan de dest pê kiribûn û ji ber şerê DAIŞ'ê hatibû taloqkirin niha dîsa destpêdikin. Amaje li ser wê yekê heye ku kurd niha bi awayekî xurttir ber bi wê proseyê ve diçin. Pisporên siyasi eşkere dîkîn ku ew ê referandûma serxwebûnê di nava çend mehan de encam bide.

Serokê RHK'ê Barzanî yê di hemam demê de Serokê Giştî yê PDK'ê ye di civîna li gel desteya rêveber a partiyê de ji desteya partiyê xwest ku xebatên referandûma serxwebûnê destpêbikin û bi wê mebestê li gel partiyên din ê siyasî jî danûstendin birêve biçin. Tê çaverêkirin ku di rojên pêş de ew ê bi rayedarên YNK'ê û bi dû re jî li gel partiyên din ê siyasî jî danûstendin li ser referandûma serxwebûnê bên kirin.

### Di nava çend mehan de referandûm

Li ser ragihandina serbixwebûnê amaje li ser wê yekê heye ku DYA'yê û Tirkiye ew ê li dijî serbixwebûnê bin. Her çend ev şîrove hebe jî di serdana Riyad û Enqerê der Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, weke serokê dewletan hat pêşwazî kirin û serdanên wî pozîtif bi encam bûn.

Tiştê ku destê Mesûd Barzanî bihêz dike daxwaza serxwebûnê ya gelê kurd e. Li ser helwesta Mesûd Barzanî jî nîqaş hene û tê gotin ku Barzanî li vîna gel xwedî derdikeve û ev yek jî dibe hokara wê yekê ku dewletên li herêmê li pabendî daxwaza gêlê kurd bin. Di derbarê serbixwebûnê de Barzanî ji BCC'yê re eşkere kir ku Iraq ji xwe ji hev ketiye û geşedanên dawî jî didin xuyakirin ku serbixwebûna kurdan mafekî rewa ye. Her wiha Barzanî bal kişand ser helwesta wan a ji bo serbixwbûnê jî û wiha berdewam kir: "Ji niha û bi şûn de em ê armcanca xwe ya serbixwebûnê veneşêrin û bi dengekî bilindtir bînin ziman." Di berdewamiya axaftina xwe de Barzanî ragihand ku ew dikarin di çareseriya qeyrana Iraqê de jî roleke giring bigrin ser xwe û wiha got: "Serxwebûn mafê kurdan ê herî rewa ye. Biryara bi serbûna Iraqê yan jî serxwebûnê ez ê nedim. Biryara dewleteke serxbixwe ew ê gel bide." Di berdewamiya axaftina xwe jî Barzanî eşkere kir ku ew ê referandûma serbixwebûnê jî din nava çend mehan de pêk were.

Mesûd Barzanî, di sala borî di meha Tîrmehê jî de di civîna Parlamentoya Kurdistanê daxwazeke wisa kiribû. Piştî, êrîşên DAIŞ'ê amadekariyên serxwebûnê hatibûn taloqkirin. Her wiha bi bi şikestina DAIŞ'ê ya ji aliyê Pêşmerge ve û rizgarkirina xaka Kurdistanê destê kurdan di meseleya serbixwebûnê bi hêz dike. Di vê çarçoveyê de amadekariyên referandûma serbixwbûnê jî destpêkirin. Di wê serdemê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî eşkere kiribû ku ew serbixwebûnê tu carî ji rojeva xwe dernaxin û dema ku wextê wê hat jî ew ê referandûmê pêk bînin. Her wiha Barzanî, tekez kiribû ku ew ê tu dewlet jî li hember serbixwebûna Kurdistanê dernekevin.

Serkirdeyên PDK'ê di derbarê amadekariyên referandûmê de dan zanîn ku Mesûd Barzanî serkirdeyên PDK'ê erkdarkirine û piştî danûstenên bi partî, sazî û pêkhateyên li Kurdistanê ew ê desteyeke amadekariyên rapirsînê bê amadekirin. Li hêla din tê zanîn ku ew ê Lijneye Bilind a Hilbijartinê rapirsînê bike û ew jî li benda biryara siyasî ya partiya ne û amadekariyên xwe dane destpêkirin.

### Welatên piştgir gelek in

Di derbarê piştevaniya serbixwebûna Kurdistanê de heta niha tu daxuyaniyên fermî ji aliyê DYA'ê, welatên YE'yê, Îran û Tirkiyê nehatiye dayîn jî tê zanîn ku dewletên girîng wê li dijî biryara kurdan dernekevin. Balkêş e di çend rojên borî de Serokwezîrê Îsraîlê Benjamin Netanyahu û Serokê Filîstînê Mahmud Ebbas dan zanîn ku ew ê piştevaniya serbixwebûna Kurdistanê bikin. Netanyahû beriya bi hefteyekê balê kişandibû ser mijarên derbarê nîqaşa serbixwebûna Kurdistanê û gotibû ku ew piştevaniya serbixwebûna Kurdistanê dike û serbixwebûna Kurdistanê destkeftiyeke şerê DAIŞ'ê ye. Li hêla din Serokê Filîstînê Mahmûd Ebbas, li Yûnanîstanê amaje bi wê yekê kir ku wan ji ber reddiya mafê neteweya xwe gelek kişandiye û nabe ku ew daxwaze gelê kurd a tayînkirina çarenivîsa xwe nebinin û ew ê piştevaniya gelê kurd dikin û got: "Ez piştevaniya dewleta kurd dikim."

Amaje li ser wê yekê heye ku DYA'yê û Almanya di şerê li hember DAIŞ'ê de piştevaniya gelê kurd dikin û ew ê pabendî daxwaze gelê kurd a diyarkirina çarenûsa gelê kurd bimînin. Lê hêla din her çend ew dewletên ku di şerê li hember DAIŞ'ê de piştevaniya xwe ya ji bo serbixwebûna Kurdistanê eşkere nekiribin jî tê çaverêkirin ku daxwaza gelê kurd a diyarkirina çarenûsa xwe jî ji aliyê wan ve bê piştvanî kirin.

Li hêla din ew ê di sala 2016'an de li DYA'yê hilbijartina Serokatiyê pêk were. Tê çaverêkirin ku namzetekî Partiya Komarî ya DYA'yê bibe serokkomar û hingê Amerîka bêhtir nêzîkî kurdan bibe. Li hêla din Macaristan û Komara Çekê jî yekser piştevaniya xwe ya ji serbixwebûna Kurdistanê ragihandibûn. Tê payîn ku ew ê gelek welatên din jî beşdarî piştevaniya Kurdistana serbixwe bibin.

### Dîplomasiya kurdan çalaktir e

Referandûma serxwebûna Kurdistanê ku dihat payîn di dawiya sala 2013'an

destpê bike, ji ber êrişên DAIŞ'ê en li ser Mûsûl, Şengal û deverên Kurdistan û Iraqê yên din hat taloq kirin, bi serkeftina Pêşmerge ya di çeperên şer de û herî dawiyê rizgarkirina Şengalê di dîplomasiya Kurdistanê de liv û tevgerê zêdetir kir. Hewlêrê bi rêzdariya Barzanî ya di warê dîplomasiyê de ji Bexdayê wêdetir giringî û çalakiya xwe peyîtand. Di pêvajoya şer de li Hewlêrê dîplomasiya cihanê ya herî zêde çêbû û niha jî ev dîplomasî didiome. RHK'ê her dem bal dikişand ser rêveneçûna hevgirtina axa Iraqê û mafê kurdan ê diyarkirina çarenûsa xwe. Di encama diplomasiya serkeftî ya rayedarên Herêma Kurdistanê de gelek dewletên cîhanê erênî nêzikî serxwebûna Kurdistanê dibin. Di lûtkeyên aborî û siyasî yên cîhanê yên herî bilind de Serokê RHK'ê bi protokolên bala tê pêşwazîkirin. Herî dawî li Riyad û welatên Kendavê bi vê protokolê hat pêşwazîkirin û di serdana wî ya di Enqerê de jî Ala Kurdistanê hatibû danîn. Ev jî weke guherîna helwestên Tirkiye û Erebîstana Siûdî ku li hember sexwebûna Kurdistanê biguman dihatin zanîn tê liqelam dan.



**Bingeha aboriya serbixwe hatibû avakirin**

Piştî êrişên DAIŞ'ê ên li ser Iraq û RHK'ê ku bûbûn sedemên qeyranek mezin, Bexdayê jî bûdçe kêm kiribû. Li hember nefta Kurdistanê ku li ser şîrketa neftê ya Iraq'ê SOMO'yê re tê îxraç kirin, para wê ya di mûçeya Iraqê de ji sedî 17 ye, ji aliyê rêveberiya Bexdayê ve hatibû birin. Ji ber wê yekê Pêşmerge û karmend ji serê sala 2014 û vir ve nikarin mûçeyên xwe bistînin.

Ji ber sedêmên birîna mûçeyê, hatina nêzî 2 milyon penaber û têkoşîna bi DAIŞ'ê re barê aboriya RHK'ê giran kiribû û RHK jî ketibû nav lêgerîna ku çavkanî û derfetên xwe yên aboriyê biafirîne. Piştî hevdîtina Hewlêr-Bexdayê ya ku di 13'ê Gulanê de pêk hatibû û tu encam jê derneketibû, Serokwezîr û rayedarên RHK'ê di 1'ê Tîrmehê de civînek lidarxistibûn û ji bo aboriya serbixwe ya RHK'ê, biryara firotina bi serê xwe ragihandibûn.

Serokê Departmana Çapemeniyê ya Zaningeha Selahedînê Badini, diyar kir ku ji bo demek nêz de zêde avantaj nebe jî, di pêşerojê de ji bo pêşkeftina aboriyê ev pêngavek giring e. Badînî ragihand ku vê biryarê şîrketên neftê yên ku li Kurdistanê kar dikin wêrek kir û piştî 1'ê Tîrmehê şîrketên mezin zêdetir bi RHK'ê re têkildar bûn. Her wiha Badînî anî ziman ku eger referanduma serxwebûnê bi encam bibe, li pêşîya aboriya herêmê astengeke ciddî namîne û ev qeyrana ku şer bûye sedem jî wê bê derbazkirin.

**"Bijarteyên Şîe jî li hember serxwebûna Kurdistanê erênî ne"**

Rezwan Badînî li ser nêzîkahîya Bexdayê ya li hember referandûma serxwebûnê jî axivî û diyar kir, şaş e ku şîe hemû bi rêveberiya Bexdayê ve bên girêdan û beşek mezin heye ku bi erênî li serxwebûna Kurdistanê dinêrin. Û got ku hinek şîe jî hene ku serxwebûna Kurdistanê weke xewn dibînin. Badînî wiha axivî: "Ew bîra bijarteyên ku bi erênî li serxwebûna Kurdistanê dinêrin, perçebûna Iraqê weke; kurd, şîe û sunne ji bo her sê aliyan jî baş dibînin û bi vê yekê dibêjin wê şîe jî ji bin zordarîya sûnnîyan derkevin. Ji ber wê yekê veqetandina kurdan weke destpêkekê dibînin û piştgiriyê didinê." Badînî destnîşan kir ku yên li dij serxwebûna Kurdistanê derdikevin jî di encama zextên Îranê de vê yekê dikin. Badînî diyar kir ku yên niha bi awayekî tund li hember serxwebûnê derdikevin jî wê piştî serxwebûna Kurdistanê vê rewşê bipejirînin. Badînî di derbarê herêmên biniqaş de jî axivî ev tişt gotin: "Ji bilî Kerkûkê xelkên li heremên weke Zûmar, Şengal, Xaneqin û Şadia ku niha di bin kontrola Pêşmerge de ne, xwe di nava ewlehiyê de dibînin û di pêşerojê de wê bi referandumekê biryarê li ser girêdana bi Kurdistanê ve bidin."

**Dr. Kemal Kerkûkî: Dewleta kurdan wê herêmê jî aram bike**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, hefteya borî fermana destpêkirina amadekariyên referandûma serxwebûna Kurdistanê dabû û ragihandibû ku bi partiyên kurd re hevdîtin bên kirin. Hat zanîn ku partiyên kurd jî di nava xwe de dest bi amadekariyan kirine.

Derbarê mijara referandûma sexwebûnê, Fermandarê Hêzên Pêşmerge yên Rojavayê Kerkûkê û Serokê Parlamentoya Kurdistanê yê Berê Dr. Kemal Kerkûki, pirsên BasNûçe'yê bersivandin û got ku serxwebûna Kurdistanê hatiye mistewaya ku nikare bê astengkirin û destnîşan kir ku eger gel bersiveke xurt bide wê hemû dijayetî bên beralîkirin. Kerkûkî da zanîn ku peymana Sykes-Picot'ê ya ku Kurdistan parve kiriye bi rabûna DAIŞ'ê pûç bûye û serxwebûna Kurdistanê wê hemû herêmê aram bike, yê ku li dij derdikevin jî wê vê bibinîn. Kerkûkî amaje pê kir ku bi serxwebûna Kurdistanê re wê Iraq bibe sê perçe û niqaşên di navbera şîe, sunne û kurdan de wê xelas bibin. Kerkûkî wiha berdewamî da axaftina xwe: "Ev rewş di heman demê de wê bandorê li ser dewletên li ser perçeyên Kurdistanê ên din bike û wan ji bo çareserkirina pirsgirêkên bi kurdên xwe re ber bi riya diyalogê ve bibe. Şerê navxweyî yê li Sûriyê û di encama wê de derketina DAIŞ'ê, bi gotinek din, şerê li herêmê bi cîhanê dide wendakirin, divê ev were dîtin. Lewma azadiya kurdan nayê wateya windakirina tu gelan, berovajî wê bide qezençkirin."

**Mele Salih: Serxwebûn armanca me ya sereke ye**

Endamê Polîtburoya Yekgirtûyi Îslamî Ferhad Mele Salih, li ser mijara referandûmê bersiv dan pirsên BasNûçe'yê û ragihand ku wan di kongreya Yekgitûyê de biryar dane ku serxwebûna Kurdistanê weke armanca sereke bigirin û ji bo sexwebûnê çi bikeve ser milên wan ew ê bikin. Mele Salih diyar kir ku divê hemû alî bên cem hev û ji bo referandûmê xebatên pêwîst bikin. Û got biryareke hevpar wê li ser encama referandûmê jî bandorê bike û wê ji referandûmê encameke sedî sed erênî derbikeve. Mele Salih da zanîn ku hêzên navneteweyî wê li gor encama referandumê helwesta xwe diyar bikin. Di berdewamiya axaftina xwe de Mele Salih got ku bi Peymana Sykes-Picot Kurdistan kirin çar perçe û ji dewletên herêmê wêdetir sedemên sereke yên perçebûna Kurdistanê, Fransa û Brîtanya ne. Mele Salih axaftina xwe wiha domand: "Peywîra ku dikeve ser milê dewletên herêmê, gûhdarîkirina daxwazên kurdan û piştgirîkirina kurdan e. Bidestxistina kurdan a mafên xwe, di berjewendiya Tirkiyeyê û dewletên ereban de ye. Ji ber ku pêwendiyên aboriyê yên bihêz yên hemûyan bi Kurdistanê re hene. Ewlehiya Kurdistanê wê bandoreke erênî li ser aramî û refaha wan jî bike."

Her wiha Mele Salih li ser niqaşa siyasî ya di navbera PDK û Goranê de jî got ku bi biryara referandûmê wê nêzîkatiyek çêbibe û wê ev qeyrana siyasî jî bê çareserkirin. Mele Salih di derbarê herêmên bi niqaş de jî daxuyakirin ku, bi biryara referandûmê ku piraniya wan herêman di bin kontrola peşmergeyan de ne, tevî hemû astengiyên Bexdayê jî gelê wan herêman wê referandûmê bike û divê herkesek jî ji biryara wan re rêzê bigire.

# "Baweriya me bi Bexdayê nema"



Li Herêma Kurdistanê ji aliyekî ve bayê serxwebûnê yê ku piştî fermana Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ya ji bo destpêkirina xebatên referandûma serxwebûnê aliyan nerm dike, ji aliyê din ve jî bi ser babeta rasterast firotina nefta Kurdistan û meseleya Başika ve nîqaşên li gel Bexda didomin. Rayedarên kurd diyar dikin ku hîç baweriya wan bi Bexdayê nameye.

Şandeya kurd ku ji bo li ser kêşeya firotina neftê hevdîtinan pêk bîne biçûya Bexdayê, çûna xwe betal kir. Cigirê Serokê Koma PDK'ê ya Parlemena Iraqê Dr. Tariq Gerdî ku yek ji endamê şandeyê bû ragihand ku ew naçin Bexdadê û diyar kir ku wê Kurdîstan nefta xwe bi serê xwe bifroşe. Gerdî Rêveberiya Bexdayê bi hişkî rexne kir û got: "Dema ku Rêveberiya Bexdayê bi hêz dibe, bi tûndî bi ser Herema Kurdîstanê ve tê û di heman demê de hêzên Pêşmerge reş dike. Êdî baweriya me bi Bexdayê nema ye. Ji ber vê yekê divê em ji bo xwe aboriya serxwebûnê bi rek bikin. Em çavlirêne ku di meha Adarê de bihayê neftê rakeve 40 Dolaran û ev jî bandoreke baş li ser rewşa aborî ya Kurdistanê bike. Serokwezîr Nêçirvan Barzanî got ku wê rêjeya nefta ku tê firotin bigihîje rojane 700 bermîlan. Ger ku Rêveberiya Bexdadê para budceya Kurdistanê neşîne, wê ev rewş wiha bidome." Gerdî her wiha ragihand ku ger geşedaneke erênî pêk bê egerî heye ku Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî serdana Bexdayê bike.

**Tirkiye ji Başika vekişiya**

Di vê navberê de li ser bertekên tund yên Bexdayê, artêşa tirk roja Şemiya borî leşkerên xwe yên Başikayê vekişand. Li heremê hezêke biçûk ya bo perwerde ya eîrên sunne maye. Yekitiya Ereb, ji ber leşkerşandin Başika Tirkiyeyê şermezar kir û xwest ku Tirkiye leşkerên xwe yên kampa perwerdehiyê ya Başika paşve bikişîne. Piştî ku Tirkiyeyê leşker şandin Başika, Iraqê ji bo Tirkiye leşkerên xwe paşve bikêşîne serî li Konseya Ewlêhiyê ya Neteweyên Yekgirtî dabû; Lê eşkere bû ku Iraqê di heman demê de bi 5 endamên Konseya re jî hevdîtin pêk anîne. Berdevkê Wezareta Derve ya Iraqê Ahmed Cemal da zanîn ku di derbarê mijarê de wan bi 5 endamên mayinde yên van welatan re hevdîtin pêk anîne û ji bilî van, wan bi welatên din re jî hevdîtinan pêk anîne.

"Armanç ne leşker, HRK ye"

Parlamentê Lîsta Kurd ya Parlamena Iraqê Rênas Cano jî di derbarê mijara Başika û helwesta Iraqê de daxuyaniyek da û rêveberiya Bexdayê bi zimanekî hişk rexne kir. Cano anî ziman ku Tirkiye li gor peymana ku bi Iraqê re îmzekiribû leşkerên xwe li Başika bi cih kirî ye, lê belê Bexda hatina leşkerên Tirkiyeyê dike hincet û Hikumeta Kurdîstanê tawanbar dike. Cano got: "Tu eleqeya HRK'ê bi vê meseleyê tune. Bexda, dixwaze bi gefan vê pirsgirêkê çareser bike lê ev helwestek şaş e. Tirkiye di çarçoveya tekoşîna li dij terorê leşkerên xwe şandiye Başika û ev ne rast e ku ev wek binpêkirina axa welatekî bê dîtin"

Cano destnîşan kir ku di têkiliyên Tirkiye û HRK de karekî nepenî tune ye û wiha axivî: "Lê belê em têkiliyên veşartî yên di nav Iraq û hin cîranan dizanin. Têkiliyên HRK û Tirkiyê di çarçoveya destûrê de ne û fermî ne." Rênas Cano rewşa ewlêhiya Herema Kurdîstan û Iraqê jî nirxand û dom kir: "Bexda nikare li Iraqê aramiyê pêk bîne, lê Peşmerge dikare li Kurdîstanê aramiyê pêk bîne. Ya girîng ew e ku herêm ji mîlîtanan bê rizgarkirin."

**Îtalya jî li Hewlêrê konsulxane vekir**

Îtalya jî beşdarî karwana welatên ku li Hewlêrê konsulxane vekirine bû. Vekirina konsulxaneyê bi merasîmeke fermî vebû û Serokwezîrê Herêma Kurdîstanê Nêçîrvan Barzanî, Wezîrê Navxweyî Kerîm Sîncarî, Berdevkê Hikûmetê Sefîn Dîzeyî, Berpirsyarê Têkîliyên Derve Felat Mistefa û Serokê Senatoya Îtalyayê Feetro Grasso û hin rayedarên Îtalyanî beşdar bûn. Di axaftina vekirinê de Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî ragihand ku Îtalya jî dema êrîşên DAIŞ'ê destpêkiriye bersiva erênî daye banga ma yü alîkariyê û got: "Alîkariya ku Îtalya kiriye li alîyekî, di demên dijwar de serdana Serokwezîrê Îtalya Matteo Renzi ya Herêma Kurdîstanê, ragiyandina ku ew li pişta kurdan in ji bo me watedar bû." Barzanî daxuyand ku Îtalya di wan demên dijwar de em tenê nehîştin û îroj jî li Hewlêrê nunertîya xwe yî herêmî rakir asta konsulxaneyê û ew pê bextewarbûnin û ev jî bi qasî di pêvajoya şer de piştgirî û alikariya ku danin me girîng e.

**"Êdî Bexda û Hewlêr nikarin alîkariya hev bikin"**

Serokwezîr Neçîrvan Barzanî daxuyand ku bi vê pêngavê têkilî û hevkariya di navbera Îtalya û Kurdîstanê de wê di asteke bilind de bidome û ji bo perwerdehiya ku li Herêma Kurdîstanê daye Pêşmergê spasiyê xwe peşkêşî leşkerên îtalyanî kir: "Em di şerê bi DAIŞ'ê li ser navê hemû dinyayê serbilindin û divê dewletên navneteweyî zêdetir alîkariyê bidine Pêşmerge. Pêşmerge di hemû çeperên şer de ji bo parastina rûmeta mirovahiyê şer dikin." Barzanî, piştî axaftina xwe pirsên rojnamegeran bersivand û li ser pirsekê di derbarê têkîliyên Bexda û Hewlerê de ragihand ku her dû rêveberî ji ji bo çareseriya pirsgirêkan aligirên diyalogê ne, lê belê êdî ne Hewlêr dikare ji Bexdayê re bibe alîkar ne jî Bexda dikare ji Hewlêrê re bibe alîkar.

**Serokwezir Barzanî hat Stenbolê**

Di vê navberê de Serokwezîrê Rêveberiya HRK'ê Neçîrvan Barzanî serdana Stenbolê kir. Barzanî li Stenbolê bi Serokwezîrê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu û Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan re civiya. Hat zanîn ku Serokwezîr Neçîrvan Barzanî li Stenbolê Dolmabahçe Sarayê saet û nîvekê bi Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan re rûniştiye. Li gor çavkaniyên Hewlêrê di ajanda Serokwezîr Neçîrvan Barzanî de "qerzdarî", "xeta gaza sirûştî" û Deriyê Sînorê Xabûrê yê di navbera RHK'ê û Tirkiyê de ji ber pevçûnan tê girtin heye. Çav li rê ye ku Barzanî li gel rayedarên tirk bahsa proseya aştiyê jî bike.

**Li Hawîce operasyona Pêşmerge û DYA**

Hate ragihandin ku li Hawîceyê Hêzên Kurd û yên DYA careke din operasyoneke hevpar pêk anîne. Jêderên herêmê ragihandin ku di vê operasyona ku li nahyeya Riyazê ya Hawîceyê pêk hatiye de serkirdeyê DAIŞ'ê Huseyn Umeyr Esafiye jî di nav hejmarek DAIŞ'î hatine kuştin î hin jî hatine birîndarkirin. Hate gotin ku DAIŞ'iyên ku dîl hatine girtin jî hene.

## Barzanî Noel'ê pîroz kir

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi sedema rojbûna Îsa mesîh bi taybetî mesîhiyên ji DAIŞ'ê reviyane û li Kurdistanê bi cîhbûne û cejna Noelê ya civata hemû mesîhiyan pîrozkir. Barzanî bi sedema cejna Noelê peyamek weşand û di peyamê de ragihandiye ku mesîhiyên li Musilê ji ber DAIŞ'ê reviyan û li Kurdistanê bi cîhbûnin bila xwe wek mêvanan nehesibînin û xwe li mala xwe bihesibînin û got: "Bi xemgînî diyardikim ku mesîhiyên li Iraqê tên înkarkirin û dewlemendiya dîroka wan ya li bajar û çoldera ji alîyê DAIŞ'ê ve tê tunekirin û brayên me yî mesîhî li Nînovayê di destê DAIŞ'ê de dîlin. Di demên herêma me bi êrîşên terorî rû bi rû man jî pirsariya meyî herî pêşî bi hevre jiyana nijadî û olî bû û divê destûr neyê dayîn li hemberî wan gefên. Bi vê daxwaziyê ez cejna civata hemû mesîhiyan pîroz dikim û temenî ya aşitiyê dişînim."

### Cerablûs nêzîktir bû

# NY ji Esad re 18 meh temen danî

Mehmet Salih Batırhan



ENKS ku di bin banê Opozîsyona Sûriyê de ye, civîna Riyadê rexne kiribû û dabû zanîn ku Opozîsyona Suriyê ji pejirandina maf û azadiya kurdan dûre û ji PYD'ê re peyama yekitiyê rê kiribû. Li aliyê din di rojeva şervanên kurd de jî rojavayê Çemê Feradê heye. Hêzên kurd ku ev demek dirêje ji aliyê pisporên leşkerî yên hevpeymanê ve tên perwerde kirin sewqiyatê ji bo herêma Cerablus û merayê dikin û li vir gelek cihên stratejîk kontrol kirine.

Di pevçûnên Rojavayê Kurdistanê de hêzên kur li rojavayê Firadê dest bi liv û tevgerê kirin, û bendava Teşrînê ji hêzên DAİŞ'ê sitendin. Di armanca wan de gihandina Ko-banê û Afrînê heye.

Hefteya borî li New York'ê Koma Piştgiriya Sûriyeyê a Navneteweyî hatibûn ba hev û li ser pêşnûmeya birayarê li hev hatibûn. Pêşnûmeya ku bi yekitiya dengan hat pejirandin de, tê çaverêkirin ku di serê meha çileyê de Opozîsyona Sûriyeyê û Rejîma Esad bên cem hev. Kom, ji bo dawîbûna şer û pêvajoyek siyasî dest pê bike hatiye avakirin.Di civîna New York'ê de alî li ser piştgirîkirina pêvajoyê bi pêşnûmeya biryarê ya Konseya Ewlekariyê ya NY li hev hatin. Pêşnûmeya ku li ser rêkeftin çêbûye di Konseya Giştî ya Neteweyên Yekgirtî de bi yekitiya dengan hat pejirandin.

Li gor pêşnûmeyê, Hikûmeta Şamê û Opozîsyona Sûriyeyê wê di serê meha çileyê de li ser maseyekê rûnên. Û ji Sekreterê Giştî ê NY Ban Ki-Moon tê xwestin ku ji bo agirbestê vebi-jêrkên çavdêrîkirinê pêşkêş bike di nava mehekê de. Ji hemû aliyên li Sûriyeyê jî tê xwestin ku êrişên xwe yên li ser sivîlan rawestînin. Di civînên Koma Welatên Piştgiriya Sûriyê yên ku tê plan kirin di rojên pêşiya me de kom bibe de helwesta DYA û Rûsyayê ya li ser çareser-kirina qeyrana Sûriyeyê ji niha ve bû mijara niqaşan. Welatên beşdar ên Koma Welatên Piştgiriya Sûriyê (KPSN) plan dikin ku di nava 6 mehan de hikûmetekê avabikin û di nava 18 mehan de jî li Sûriyeyê hilbijartin pêk bên.

Li hêla din civîna ku dê di meha çileyê de pêk bê, tê pêşbînîkirin ku li Cenevê bê kirin. ENKS ku di bin banê Opozîsyona Sûriyê de ye, civîna Riyadê rexne kiribû û dabû zanîn ku Opozîsyona Suriyê ji pejirandina maf û azadiya kurdan dûre û ji PYD'ê re peyama yekitiyê rê kiribû. Li aliyê din di rojeva şervanên kurd de jî rojavayê Çemê Feradê heye. Hêzên kurd ku ev demek dirêje ji aliyê pisporên leşkerî yên hevpeymanê ve tên perwerde kirin sewqiyatê ji bo herêma Cerablus û merayê dikin û li vir gelek cihên stratejîk kontrol kirine. Çavkaniyên li herêmê radigihînin ku hinek yekîneyên hêzên kurdan hatine ber deriyê Bendava Teşrînê û hinek yekîne jî ji bo kontrolkirina Reqqa û Cerablusê dest bi operasyonan kirine. Her wiha hêzên kurd ku di qada şer de li hember DAİŞ'ê serkeftinên mezin bidestxistine, cih negirtina wan di civînên navneteweyî de ku di van civînan de Sûriye ji nû ve tê dîzayn kirin, di wê pêşerojê de pirsgirêkên nû derxîne holê.

### Bendava Teşrînê di destê hêzên kurd de ye

Hêzên kurd yên ku ev demeke li hember DAİŞ'ê operasyonên serkeftî li dar dixin, niha li başûrê Kobanê operasyonek dan destpêkirin. Hêzên kurd, berê xwe dan Reqqa û Cerablusê ku ji bo DAİŞ'ê navendên giring in û Bendava Teşrînê kontrol kirin. Çavkaniyên herêmê radigihînin ku hêzên kurd bendav kontrol kirine û rêyên dorûberê xistine destê xwe. Teşrîn a ku bi navçeya Minbiç a bi Helebê ve girêdayîye ji navçeyê 33 km dûr e û nêzikî 70 km dikeve başûr-rojavayê Kobanê. Hêzên kurd bi navê "Pêngava azadkirina gûndên Kobanê" ji 23 Berfanbarê û vir ve operasyonan pêk tînin û di vê çarçoveyê de nêzî 100 gund hatin kontrol kirin. Hêzên kurd bi vê pêngavê armanc dikin ku riya di navber Reqqa û Cerablusê birin. Teşrîn di navbera her du bajêran deye û hêzên kurd bi gelek yekîneyan li herêmê ne.

### "Emê bersiva êrîşan bidin"

Li aliyê din li herêma Efrînê agirbesta di navbera YPG û Komên Îslamî têk çû û tê ragihandin ku pevçûnan dest pê kiriye. Di derbarê pevçûnan de Berdevkê Serfermandariya YPG'ê yê Efrînê Firat Xelîl, daxûyakirin ku êrişên li hember Efrîn û Şêx Mexsûdê bidomin wê agirbest wateya xwe winda bike û ew jî dê mafê xwe yê bersivdayinê bikar bînin. Berdevkê Serfer-mandariya YPG'yê Efrînê Firat Xelîl diyar kir ku wan bi komên ku girêdayî Odeya Ope-rasyonan a Artêşa Fetîhê re agirbest çêkiribûn, lê hin komên girêdayî odeyê vê bin pê dikin. Xelîl got çete êrîşî gûndên Efrînê Cîlber, Bênê, Basûfanê û taxa Şêx Mexsûda Helebê dikin û amaje pê kir ku naxwazin şer bikin. Her wiha Xelîl destnîşan kir ku li hember êrîşan jî bêdeng namînin û ev gotin: " Me bi hin koman re agirbest jî çêkir lê dîsa jî êrîşî me dikin. Em di-bin êrişên giran da ne. Li gor agirbestê diviyabû dorpêça li ser Efrînê rabûya û riya di na-vbera Heleb û Efrînê vebûya. Lê heya niha tiştek wisa nebû, berevajî erişên xwe dijwartir ki-rin. Em dixwazin raya giştî vê bizanibe. Heke wisa bidome wê tu wateya agirbestê nemîne.

### "Gef li kurdan tê xwarin"

Hêzên çekdarî yên Tirkiyê, piştî ku hêzên kurd Girêspî rizgar kiribûn bi awayekî aşkera gef li kurdan dixwarin û êrîşî çeperên YPG'ê dikirin. Her wiha hat ragihandin ku vê carê jî li ba-jarê Qamişlo li Rojava li sê ciyan bi cih bûne. 22 Berfanbarê yekîneyek leşkerî ya Tirk li nêzikî gûndê Dêrika Rojava 150 metreyan ketibû hindûr û li Girê Til Efrît bicî bûbû. Hat za-nîn ku Fermandarên Tirk ji gûndiyan re gotine, ew bi "armanca bergiriyê" hatine ser sînorê Tirkiye-Sûriyê.

Ji rêveberên ENKS Biradost Kemal rewşa li herêmê ji Bas Nûçeyê re nirxand û got ku Artêşa Tirkiyê di demên dawî de yekîneyên leşkerî sewqî herêmê dike û ev tê wateya gexwarinê li kurdan. Kemal amaje pê kir ku Tirkiye peymanên navneteweyî bin pê dike û ji bo sînorên dewletek din leşkeran dişîne û bi vê yekê hewl dide ku zextan li ser kurdan bike. Kemal diyar kir ku Bakûr û Rojavayê Kurdistanê yek in û axaftina xwe wiha domand: "Tirkiyeyê, di qonaxeke ku li ser kurdên Bakûr êrişên xwe zêde kirine de, dixwaze peyamekê bide kurdên Rojava jî." Kemal li ser polîtîkaya Tirkiyeyê ya derve jî got ku Tirkiye tim midaxeleyî qeyra-na li Iraq û Sûriyê dike û têkiliyên wê ên bi komên selefî re jî tên zanîn û Tirkiye leşker şan-dine Iraqê. Li hember Rojava çeperên xwe çêdike

.

### "Bila kurdên Sûriyê qet hizra dewletê nekin"

Li hêla din Parlamenterê Sûriyê Şerîf Şihadê ragihand ku tu paşeroja YPG'ê û PKKê li Sûri-yê tûneye. Şihadê ku li Hewlêrê bû, di hevpeyvînekê de behsa dewleta Kurdistanê û çareni-vîsa hêzên YPG'ê piştî arambûna rewşa Sûriyê kir. Wî parlamenterê Sûriyê ragihand: "Cudahî di navbera DAİŞ'a Sûriyê û DAİŞ'a Iraqê heye, ku xelkê Sûriyê tevlî wê nebûne, lê li Iraqê piraniya çekdarên wê ji Iraqê ne." Parlamenterê Sûriyê derbarê pirsa kurd li Rojavayê Kurdistanê û paşeroja kurdan li wî welatî û çarenivîsa hêzên YPG'ê piştî nemana komên çekdar, wiha got: "Pirsgirêka kurdî li Sûriyê ne nûye û pirsgirêkeke kevin e. Rast e kurd dax-waza mafên rewşenbîrî û çandî dikin, ku ez venaşêrim ku Hikûmeta Sûriyê di vê yekê de kêmxembûye."Di derbarê egera cudabûna kurdan û ava-kirina dewletekê li Rojavayê Kur-distanê Şihadê wiha got: "Biryara Encumena Ewlekariya Niştimanî ya Sûriyê heye ku nabe welat perçe bibe û divê yekperçe bimîne." Şerîf Şihadê wiha domand: "Eger nêta kurdan bi avakirina dewletekê li Sûriyê hebe, em qebûl nakin. Yê ku hizra dewletê bike xeletiyê dike. Bila kurd di xeyalê de jî hizra dewletekê nekin. Em qet rê nadin avakirina dewleta Kurdistanê."

# Di şer de sivîl mex

Piştî bi dawîbûna proseya çareseriyê rêyên siyasetê hatin girtin. Helwesta dewletê ya tûndî li hember xendekan dibe sedem ku wêrankariyeke mezin li ser jiyana xelkê sivîl pêk were. Banga saziyên sivîl û rêxistinan medenî ya 'dev ji pevçûnê berdin'' ji aliyê her du terefan jî nayê dîtin û tê zanîn ku ji ber pevçûnên çend mehên dawî 532 kesî jiyana xwe ji dest daye.






Piştî bi dawîbûna proseya çareseriyê rêyên siyasetê hatin girtin. Helwesta dewletê ya tûndî li hember xendekan dibe sedem ku wêrankariyeke mezin li ser jiyana xelkê sivîl pêk were. Di rewşa ku bi hezaran malbat ji ber pevçûnan ji cihê xwe bûne, bi hezaran kes di warê peydakirina cih û warekî de tûşî arîşeyan bûne, kêşeya xwendinê rû daye, nexwşên ku divê berde-wamî biçin nexweşxaneyan nikarin pêdawistiyên xwe dabîn bikin, aborî tûşî gelek arîşeyan bûye de her dû teref jî li ser helwesta xwe bi israr in û ev yekî tê nîqaş kirin. Banga saziyên sivîl û rêxistinan medenî ya 'dev ji pevçûnê berdin" ji aliyê her du terefan jî nayê dîtin û tê zanîn ku ji ber pevçûnên çend mehên dawî 532 kesî jiyana xwe ji dest daye. Ji ber pevçûn-an derûniya bi hezaran zarokan xirabbûye û şûnwarên dîrokî yên Sûrê ku UNESCO'yê ew weke Mîrata Cihanê ya Mirovahiyê ragihan-dibû jî rastî wêranbûn û kavilbûnê bûye.

Ji ber pevçûn û qedexeya derketina kolanan ya li 7 devaran navçe bûne warên û bê mirov. Her roj mirina 2-3 zarokan jî li wê wêrankariya mezin zêde dibe. Di rewşa ku bi hezaran malbat ji ber pevçûnan ji cihê xwe bûne, bi hezaran kes di warê peydakirina cih û warekî de tûşî arîşeyan bûne, kêşeya xwendinê rû daye, nexwşên ku divê berdewamî biçin nexweşx-aneyan nikarin pêdawistiyên xwe dabîn bikin, aborî tûşî gelek arîşeyan bûye de her dû teref jî li ser helwesta xwe bi israr in û ev yekî tê nîqaş ki-rin.

**Navçe di nava şer de ne**

Li Cizîr û Silopiyê operasyona di bin rêveberiya 6 generalan de û bi hezaran leşker û polîs û tank û top jî tên bikaranîn dewam dike. Ji ber bika-ranîna çekên giran gelek xanî xerab bûne. Bajêrên ku PKK'ê jî hêza xwe lê zêde kiriye de pevçûnên dijwar diqewimin û agahiyên ku gelek mirovan ji-yana xwe ji dest dane belav dibin. Li hêla din her roj agahiyên mirinan ji pevçûnên li Silopî û Kerboran'ê tên. Di xwepêşandan û êrişan de jî gelek kes jiyana xwe ji dest didin. Li Nisêbînê jî ku rojên borî qedexe hatibû ra-kirin, hê jî alozî didomin û tê ragihan-din ku wê pevçûn dîsa dest pê bikin.

Li aliyê din agahiyên kolandina xendekan û amadekariyên operasyo-nan ji navçeyên Amed, Şirnex, Wan û Colemêrgê tên.

CHP'ê li ser pevçûnên dijwar ên li Sûrê raporek amade kir û ragihand ku Sûra ku serjimara wê 24 hezar kes e, ji van 22 hezar kesî koç kirine. Di raporê de giliyên li ser helwesta hêzên ewlekariyê, nivîsên li diwêran hatine nivîsin, anons û dujinên ku tîmên taybet dikin jî cih gir-tin. Di raporê de navnîşana van kiryaran jî weke hêzên taybet tên nîşandan. Di raporê de tê aşkera kirin ku ji ber sedema qedexeya derketina kolanan 200 hezar kesan ji herêmê koç kirine û tenê ji Sûrê 22 hezar kes koçberbûne û dibistan, na-venden tenduristiyê û sazi hemû girtine.

**"Zarok dibin xeteriyê de ne"**

Li ser bandora şer û pevçûnên li herêmê ya li ser zarokan jî Dr. Abdul-lah Karatay ji rojnameya me re axivî û diyar kir ku şerê li herêmê rû dide, bandorek neyînî diafirîne û dibe sedema trawmayan li ser zarokan. Kara-tay di berdewamîya axaftina xwe de bal kişand ser gihaştina psikolojîya za-rokan û got ku trawmaya şer li ser zarokan demdirêj û kûr e. Ji ber wê yekê zarok di jiyana xwe de her tim dikevin nav xeteriyekê. Karatay axafti-na xwe wiha domand: "Şer pêşveçûna zarokan asteng dike. Nifşek ji Tir-kiyeyê veqetiyayî derdikeve holê. Nifşek wisa digihije ku nikarin pê re diya-logê deynîn. Ev li ber çav nayê girtin."

**"Mafê mirovan ê jiyanê tê binpêkirin"**

Serokê Odeya Bijîşkan a Amedê Cengîz Gunay diyar kir ku li ciyê pevçûnan pirsgirêkên cidî yên tenduristiyê rû dane û xizmetên tenduristiyê bi dawî bûne. Gunay got ku divê ev kulekiye ji holê bên rakirin û wiha axivî: "Mafê mirovan ê binecihî xwedîbûn, tenduristî û perwer-dehiyê hatiye îxlal kirin. Me tespît kir ku mirovên herêmê nikarin xwe bigihînin tenduris-tiyê. Nexweşên kronîk, şeker û dîyalîzê nikarin xwe bigihînin navendên tenduristiyê û nexweşxaneyan. Dîsa yên ducanî nikarin testên xwe bikin. Yên ducanî zarokên xwe li malê tînîn dine. Taybet jî di xwedîbûnê de pirsgirêkên mezin derdikevin. Xwedîbûneke yek alî heye, bi giranî xwedîbûna bi karbonhi-dratê zêde ye. Heke ev wisa dewam bike wê di zaro-kan de xwedîbûna xerab, pirsgirêkên cidî derbikevin holê." Gunay li hêla din ragihand ku li herêmên pe-vçûnan kanalîzasyon û borîyên avê xesar di-tine û ji ber vê yekê ew bi nexweşîyên şewbê re, rû bi rû mane. Gunay axaf-tina



# dûr dibin



xwe wiha domand: "Mirovên herêmê tên astengkirin ku xwe bigihînin ava paqij. Ji ber wê yekê nexweşî wê derbikevin holê. Bi taybetî jî di mehên zivistanê de ku enfeksîyana nexweşîyên bi henaseyê re peyda dibin gelek in. Mirov li cihê ku lê ceyran, av û çûn û hatin tune bi van nexweşîyan re rû bi rû ne."

**"Rewşa nexweşên kronîk giran dibe"**

Serokê Odeya Bijîşkan a Mêrdînê Kamuran Yıldırım destnîşan kir ku mirovên herêmê nikarin pêdivîyên xwe ên sereke jî bicih bînin û îxlal û piştgûhkirinek mezin heye. Yıldırım got ku ev îxlal vedigerên sezayê û wiha dewam kir, "Deverên ku lê qedexe heyî pirsgirêka ceyran, av û çopê heye. Ev jî ji bo derketina nexweşiyan xeteriyek mezin pêk tînin. Tinebûna cey-ranê, veneşartina xwirekan di rewşek tendurust de, rizîna wan ji bo xwari-na xwirek û xerabûna xwedîbûnê rîskek mezin derdixîne holê ji bo çêbûna nexweşiyên berbelav." Her wiha Yıldırım bal kişand ser rewşa nexweşên kronîk û eşkere kir, ji ber ku nexweşên kronîk nikarin xwe bigihînin der-manan û kontrolên wan dilepikin rewşa wan giran dibe. Der-mankirina za-rok û ducanîyan pêk nayê û bi taybetî jî ku navendên tendurustiyê girtine nexweşiyên sorik û polio yên ku li herêmê winda bûbûn, xeteriya dîsa der-ketina wan heye.

**"Em ji rewşa dermanxaneya asayî derketin e"**

Serokê Odeya Dermanfiroşan a Amedê Ferat Değer got ku bi destpêki-rina şer û qedexeya li navçeya Sûrê dermanxane girtine û mirov nikarin xwe bi-gihînin tenduristî, teşhîs û no-jdariyê. Değer, her wiha amaje pê kir ku ew di nav hewlan de ne ku xwe bigi-hînin saziyan bi awayekî fermî. Değer axaf-tina xwe wiha domand: "Divê em pêdiviyên tenduristî yên van mirovan pêk bînin. Nemaze jî divê odeya tabîb û dermanfiroşan xebatan bikin. Bi awayekî dildarî. Em ji ber şer ji statûya dermanxaneyê derketine. Ji ber wê yekê em armanc dikin ku xebatên xwe yên li vir di nava rewşeke ewle de bi gelê xwe re rûbirû hevdîtinan bikin û xwe bigihînin teşhîs, muayene û der-manan."

**"Uğur Elik: Mirov nikarin xwe bigi-hînin dermanan"**

Serokê Odeya Dermanfiroşan a Mêrdîn û Şirnexê Uğur Elik, diyar kir ku ji ber qedexeya derketina kolanan, mirov nikarin xwe bigihînin pêdivîyên tibî û got ku dermanfiroş cihê lê şer heye nikarin dermanxaneyên xwe vebikin. Elik di berdewamiya axaftina xwe de anî ziman ku mirov ji bo ku xwe bi-gihînin dermanan zehmetiyên mezin dikşîn in. Her wiha Elik wiha dewam kir, "Ji ber ku ewlehiya canê mirovan nîne dermanfiroş girtîne. Gelek der-manxaneyan jî xesar dîtiye." Elik li ser rewşa nexweşên kronîk jî sekinî û destnîşan kir ku nexweşên şeker û dîyalîzê nikarin xwe bigihînin derman û nexweşxaneyan.

**Çekên giran xistine nava bajêr**

Serokê Giştî ya Konseya Bajêr ya Amedê Cihan Aydın jî di derbarê ber-nameya guherîna bajêr de agahî dan û got gelek sazî guherina bajêr wekî 'guherina rantê' bi nav dikin. Aydın got ew dijberî guherîna bajêrin ew dixwazin ku guherineke di cîh de bê kirin û kesên ku li van deran dijîn neyên derxistin an ji avahiyên ku ji bo wan bêne çêkirin nêzikî van cihan be. Aydın got: "Em nizanin ku nava Sûrê li çi dibe gelek şûnwarên dîrokî hatine şevitandin. Çekên giran xistine nava navçeyê em metirsîdarin ji ji-yana mîrovan, ev çek di heman demê de şûnwaran ji wêran dikin. Di dîroka Sûrê de tu caran jiyan ji vir qut nebûye cîhên ku ketine lîsteya UNESCO'yê hemû cihên bê însan in. Em di nav tirseke mezinda ne ku ev pêvajo bidome. Ji bo ku ev şer û pevçun bi dawî bibe divê demildest dest bi muzakerey-an bikin."

**Guherina bajêr dibê di cîhde bê kirin**

Saziyên sivîl yên Amedê naxwazin plana guherina bajêr pêk were ew dix-wazin di cîh de guherînek pêk were. Ser-okê Odeya Avahîsaz ya Amedê Merthan Anık jî destnişankir ku şer û pevçunên nava kuçeyên Surê pêk tên zirarek me-zin didin şûnwarên dîrokî. Anık diyarkir ku Sûr wek qada riskê hatiye ragihan-din û got: "Wezaratê ev şer û pevçûn ji xwere wek firsendekî dîtiye û dibêjin 'Ji xwe ev der wê bihata xirabkirin, çiqas zu xirabe ewqas baş e' ev cihen bê tescîl dibê piştî analizan werin hilweşandin û ji nû ve bêne çêkirin. Projeyên ku ji nû ve bêne çêkirin dibê bi şaradariyan re bi hevparî û li gor îmara Amedê bê çêkirin. Lê AKP'e yasayek nû derxist û hemû biryara bi serê xwe dikare bide." Anık destnişankir ku ew nizanin ji ber van şer û pevçûnan şûnwarên dîrokî çiqas zirar dîtine. Anık her wiha di-yarkir ku çekên li nav Sûrê têne bi kar anîn wê zirarek mezin bidin ber-mayîyên dîrokî û tê go-tin ku Mizgefta Kurşunlu û Hacî Hemîd,

**"Avadanî divê bi rêbazên UNESCO'yê be"**

Seroka Rêveberiya Qada Peyzaja Çandî ya Keleha Amedê û Bexçeyên Hewselê Nevin Soyukaya di derbarê wêrankirina çand û mîrateyên dîrokî ji Bas Nûçeyê re nirxandin kirin. Nevin Soyukaya, got ku divê demildest pevçûn werin sekinandin û ji bo ku yên koç kirî vegerin cih û warên xwe bergirî bên sitandin. Soyukaya diyar kir ku ji bo restorasyona berhemên dîrokî, divê sazi-yên navendî û herêmî bi hev re xebatan bimeşînin. Soyu-kaya wiha axivî: "Şer û dorpçêa li Kurdistanê li gel komkujiyên mirovan qadên jiyanê jî tune dikin. Îro bi şer dîroka me, bîr û hişên me tune dikin." Soyukaya destnîşan kir ku, ji bo bajar vegere rewşa xwe ya berê divê pro-jeyên civakî-aborî bên çêkirin.

**"Bandorê li ser tevahiya welat dike"**

Ji ber qedexeya li Cizîr û Silopyayê ji 14'ê mehê û vir ve deriyê sînor Riya Îpekê, bi sedema ewlehiyê girtine. Ajokar jî ku li ser vê riyê û derî kar dikin dibêjin em mexdûr bûne û dixwazin deriyê sînor bê vekirin.Serokê Şîrketa Arî Trans a Neqliyeyê Mehmet Ari, diyar kir ku ji ber girtina deriyê sînor nikarin kredî, sened û deynên xwe bidin. Ari got ku ambargoya Rusya û Iraqê ya li ser malê Tirkiyê ne bes bû niha jî derî hatiye girtin. Ev ne tenê li ser herêmê li ser tevahiya Tirkiyeyê bandorê dike.Ari di berdewamîya ax-aftina xwe de got ku pır mexdûr bûne.

**"Bi tank û topan mesele çareser nabe"**

Prof. Dr. Mehmet Altan jî ji BasNûçe'yê re axivî û got şer û pevçûnên li he-rêmê belavbûne û NY û saziyên navnetewî eşkere kirine ku "xendekan jî û tundiya dewletê jî napejirînin" û dijî tûndiyê ne. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Altan diyar kir ku, pirsgirêka kurdan bi tank û topan nayê çare-serki-rin. Altan wiha dewam kir: "Dewlet niha gel û axa xwe topbaran dike ev bi terorê nayê îzahkirin. Li şûna ku li çareseriyek sîyasî bigerin, bi tank û topan opera-syonan dikin. Rewş ber bi karesatekê ve diçe. Mesele her diçe dibe û dibe ku heta NY jî biçe. Ya din jî êdî mirovên me hêviyên xwe bi derve girê didin."





## Dr. Elî Teter:

# Wê dinya rêz li serxwebûnê bigire

Endamê Serkirdayetiya PDK'ê Dr. Elî Teter pêkhatina referandûma serxwebûnê tekez kir û biryardariya gelê kurd wek mîsogeriya vê destnîşan kir. Teter helwesta Siûdî û Tirkiyeyê erênî, ya Îranê neyênî nirxand û balê kişand ser aloziyên jî navxweyî got: "Ez bawer nakim ku Goran li dij vê daxwazê derkeve" Teter destnîşan kir ku ya herî girîng daxwaza gelê Kur-distanê ye.

**Mustafa Turan**

Bi fermana Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî ya destpêkirina amadekariyên proseya referandûma serxwebûnê re, rojeva hemû kurdan bû serxwebûn. Endamê Civata Serkir-dayetiya PDK'ê Dr. Elî Teter destnîşan kir ku ji bilî gelê Kurdistanê tu hêz nikare pêşî li vê pêvajoyê bigire û pêwîst e dewletên herêmê pêwendiyên xwe li ser cîrantiyeke baş a bi Kurdistanê re ji nû ve saz bikin. Teter ku pirsên BasNûçe'yê bersivandin, ji bo rêz-girtina mafê çarenûsa gele kurd peymanên navnetewi nîşan da û got, "Serxwebûna Kurdistanê ji bo tu kesî ne egera metirsiyê ye."

**Bi vê fermana Serokê HRK'ê Mesûd Barzanî re mirov dikare bêje ku li pêş referandûmê tu astengiyeke mezin nema ye?**

Bersiva vê pirsê di barûdoxê Kurdistanê de veşartî ye. Beriya şerê DAIŞ'ê jî xebatên referan-dûmê destpê kiribûn, lê DAIŞ bû asteng ku wê demê referandûm pêk bê. Bêguman ew asten-geke demkî bû û ger ku rewş wiha bidome wê referandûm jî bê kirin û wê gelê kurd biryara xwe bide.

**Piştî serdana xwe ya dawî ya DYA'yê Serokê Herêmê banga yekîtiya netewî kir û got; "Ger hemû hêz û alî piştgirî bidin em dikarin niha jî serxwebûna Kurdistanê ragihînin" Ev car egerî heye ku yekîtî pêk bê?**

Berî her tiştî ez bejim ku meseleya referandûmê yan jî bidestxistina mafê çarenûsê ne kar û erka partî yan jî rêx-istinekê ye. Yanî serxwebûna Kurdistanê babeteke pir mezin e. Ji bo siberoja hemû kurdan girîng e û hemû kurdan eleqedar dike. Ev babeta mezin bi ser daxwa-za yek partiyekê nagihîje encameke baş. Ji ber vê yekê divê hemû hêz, alî û hemû pêkhate jî beşdarî vê pêvajoyê bibin û vî karî bi hevre bikin. Eger ku beşdar jî nebin, qet nebe divê bibin alîkar an jî nebin asteng. Pir asayî ye ku aliyên siyasî li ser gellek babetên siyasî, aborî, dadwerî û yasayî wek hev nefikirin û tevnegerin an jî wek hev girîngiyê bidine hin xa-lan. Lê di meseleyên wek referandûm û serxwebûn ku pir girîng in û siberoja gel diyar dikin, divê her alî ciddî nêzîk bibin û erka dîrokî ya ku îro ketiye ser milê wan bi cih bînin. Di meseleyên wiha de xala herî girîng yekdestî û yekbiryarî ye. Daxwaza serxwebûnê dax-waza hemû kurdên ku xwe kurd dibîne, şoreşger û welatparêz dibînin e.

### "Wê Goran jî piştgirî bide"

**Bi raya te di vê babetê de wê helwesta Tevgera Goran çawa be?**

Tevgera Goran, di vê babetê de heta niha tu daxuyanî nedane û helwesta xwe diyar nekiri-ye. Ji bilî vê, hîna bi aliyên din re hevdîtinan destpênekirine û karê pêkanîna referandûmê fermî nebûye. Dema hevdîtin pêk bên û karûbar destpêbikin, wê gavê ew ê hemû alî hel-westên xwe diyar bikin û em ê bibînin. Lê, bi raya min ev ne babeteke des-thilatî yan jî siyasî; meseleyek e ku çarenûsa hetahetayê ya gelê kurd diyar dike û ji ber vê yekê jî ez bawer nakim ku ne Goran, ne jî tu partiyeke din li hember derkeve û piştgirî nede.

### "Hemû dinya nabe alîkar"

**Bernamzetên Komarparêz ji rêveberiya Obama bêtir qala piştgirîdayîn û mafê çarenûsa kurdan dikin. Gelo Birêz Barzanî li bendê ye ku di hilbijartinên dawiya 2016'an de Komarparêzek bibe se-rokê DYA?**

Wê kurd biryara serxwebûn an jî neserx-webûnê bidin. Erê em dixwazin ku DYA, welatên ro-java yên din hemû kes piştgirî bidine vê helwesta serxwebûna Kurdistanê, lê belê, di babe-teke wiha de xala herî girîng helwesa gelan e û em tenê helwesta gel ji xwe re dikin pal-pişt. Derfetên mercên ku hemû dinya alîkariya me bike tune ne, ji ber vê yekê divê kurd di warê aborî, leşkerî û civakî xwe amade bikin, bi biryar bin bi piştgiriya gelê xwe serxwebûnê ragihînin. Lê belê diyar e ku piştî şerê DAIŞ'ê, di qada navnetewî û Rojhilata Navîn de, di derbarê kurdan de wêneyekî baş peyda bûye. Bêguman ev wêne faktoreke baş e ji bo kurdan. Taybet li Ro-jhilata navîn êdî hemû gel bergiriyê li azadî û serxwebûnê, mafê mirovan û şaristaniyê dikin û rola RHK'ê ya di aramiya herêmê û demokrasiya wê jî ji alî DYA û hemê dewle-tan tê dîtin. Bi vî awayî ez dikarim bêjim çi Komarparêz, çi demokrat wê her kes rêz li daxwaza mafê çarenûsa gele kurd bigirin.

**Almanya girîngtirîn dewletek dinyayê ye û di şerê DAIŞ'ê de hem di warê perw-erdekirina Pêşmerge hem jî di alîkariya çekan de piştgiriyeke baş da RHK'ê. Wê helwesta Berlînê çawa be?**

Eger referandûm rapirsiyeka baş be, li gor yasayên destûrê pêk bê û bi yek dengî encam bide, ev yek wê bandora xwe ya erênî li ser helwesta Almanya û hemû dewletên din jî bike. Her dewlet, li herêmê, li gor hêza xwe, ji bo berjewendiyên xwe çi penî çi nepenî, bi-zaveke li herêmê re pêwendiyan durust dike. Lê belê mafê çarenûsê di yasayên peymanên navnetewî de destnîşankirî ye û hemû dewletên pêşketî van peymanan îmze kirine. Ji ber vê yekê tu dewletên ku van pey-manan îmze kirine nikarin ji daxwaza gele kurd a ku wê bi ref-erandûmê bê aşkerekirin asteng bikin. Bi xebatên dîplomasî yên ku RHK û Serok Barzanî em dizanin ku wê gellek dewlet piştgirî bidine ve daxwazê û yên ku piştgirî nedin jî qet nebe ew ê nebin asteng. Egerî heye ku hin ji wan astengiyan durust bikin lê wê nikaribin pêşî li vê dax-wazê bigirin.

**"Wê komîsyona hilbijartinan biryar bide"**

**Di dawiya 2013'an de Serokê Herêmê Barzanî di danîştina ji derve re girtî ya parlamanê de jî xwes-tibû ku xebatên re-ferandûmê destpê bikin, lê dûre êrîşên DAIŞ'ê destpê kirin û xebatên refer-andûmê hatin rawestandin. Gelo egeriya xeterek din ku dîsa ji referandûmê re bibe asteng heye?**

Di dawiya 2013'an de biryar nehatibû dayîn, tenê daxwaz hatibû kirin ku di çarçoveya yasayî de komîsyona hilbijartinan bê sazkirin da ku dest bi karên referandûmê bike. Komîsyona hilbijartinê hate sazkirin û xebat hatin destpêkirin; Lê bele, weke em dizanin piştî 3 mehan, li gel ku komîsyonê karûbarê xwe temam nekiribû êrîşên DAIŞ'ê rû dan. Vê carê rewş cudatir e ji wê demê û eger ev rewş wiha bidome wê referandûm bê kirin. Niha jî rexş pir derfetdar nîne. Qey-raneke aborî û siyasî heye û ji bo karûbarên referandûmê jî sermaye pêwîst e. Her wiha ji bo referandûmê divê asayîş jî pekan be. Wê komîsyon şert û mercan bide ber çav û nirxandina xwe bike. Ger ku ragihîne ku derfet hene û ew ê dikaribe referandûme pêk bîne, wê gavê referandûm di demeke nêz de pêk tê.

**Piştî ku di referandûmê de daxwaza serxwebûnê derkeve wê serxwebûn bê ragihandin?**

Di referandûmê de daxwaza serxwebûnê derkeve, ev nayê wê wateyê ku serxwebûn hatiye ragihandin. Referandûm guhdarkirin û zanîna raya gel e. Erka rêveberiyan jî ew e ku ji bo daxwazên gel ên ku ji referandû-man derketine derfetan peyda bike da ku daxwaza gel bi cih bîne. Lê ya pêwîst ew e ku kurd biryara xwe bidin û bê xwestin ku rêz li vê biryarê bê girtin, çimku heta niha rêz li daxwaza kurdan nehatiye girtin. Çi tirk, çi Iraqî, çi Îranî û Sûrî be, her zor li ser kurdan hatiye ferzkirin û kurd hatine xapandin. Bi referandûmê wê kurd raya xwe nîşanî dinyayê bidin û piştî wê çi dibe ew babeteke din e.

**"Berjewendiyên kurd û Îsraîlê yek in"**

Serokdewletê Filistînê Mehmûd Abbas û serokwezîrê Îsraîl Benjamin Netanyahu ragihandin ku ew piştgiriya serxwebûna Kurdistanê dikin. Taybet girîngiya piştgiriya Îsraîlê ji bo serxwebûna Kur-distanê çi ye?

Îsraîl, hem li Amerîka û hem li hin welatên Ewropa xwedî lobiyeke xurt û bi bandor e. Kêm dewletan di vê bareye de helwestên xwe aşkere kirine. Em baş dizanin ku tu dewlet ne di berjewendiyên wan de be piştgiriya xwe bi aşkere ranagihînin. Ji vê helwesta Îsraîlê mirov dikare têbigihîje ku berjewendiyên wê û yên Kurdistanê dibine yek. Mixabin piraniya de-wletên ku li dijî serxwebûna Kurdistanê ne, dewletên ereb û yên Îslamî ne û heman ev dew-letên ereb û yên Îslamî li dijî Îsraîlê ne jî. Bi ser ve rewşê mirov dikare helwesta Îsraîlê têbigihîje, lewre pêdiviya we bi dostan heye.

### "Divê em bi tirk, fars û ereban re bibin cîranên baş"

**Mesûd Barzanî hem li Riyadê hem jî li Enqereyê bi protokola bala hate**



**pêşwazîkirin û yekem car li Tirkiyeyê di protokolê de cih da Ala Kurdistanê jî. Mirov dikare vî wêneyî wek razîbûna Siûdî û Tirkiyeyê ya ji serxwebûna Kurdistane re binirxîne?**

Em baş dizanin ku li Rojhilata Navîn Siûdî û Tirkiye xwedî roleke girîng in û yek li bakur yek jî li başûrê Rojhilata Navin cih digirin. Ji ber vê yekê peşwaziya ku li Cenabê Serokê Herêmê Mesûd Barzanî hatiye kirin ji bo me pir girîng e. Erebistana Siûdî kêm caran pêşwaziyeke wiha li serokdewletan dike. Ji alî Tirkiyeyê ve, em li gel hev bi ser çend astengan de derbas bûn û em gihîştin qonaxeke pir girîng. Tirkiyeyê înkara kurd û navê kurdî dikir û Ala Kur-distanê nasnedikir. Lê îro em dibînin ku bi şêweyeke fermî, wek serokdewletekî bi Ala Kur-distanê pêşwaziya Mesûd Barzanî dike. Bêguman ev pengaveke pir girîng e û aşkere dibe ku Tirkiyeyê grîftên xwe yên bi kurdan re daniye aliyekî û qonaxeke pir mezin derbas kirî ye. Bi raya min divê ev nermbûn hê jî berdewam bike û Tirkiye û hemû dewletên din ên wek wê baş têbigihîjin ku meseleya mafê çarenûsa gelê kurd nabe sedemê metirsiyê, lewre kurd ji bo tu netewe yan jî dewletekê gef nînin. Em jî wek hemû gelên dinyayê, di çarçoveya pey-manên navnetewî yên ku mafê çarenûsa gelan destnîşan kirine, dixwazin mafê xwe bi dest bixin. Axa me diyar e, Ala me diyar e û zimanê me diyar e. Divê herkes ji vê rastiyê re hur-metdar be û hewl bide ku sûd ji vê rastiyê werbigire. Rêya herî baş ew e ku di şûna ku em di yek malekê de heta hetayê nexweşîn bijîn, em jî dewleta xwe damezirînin û li gel Tirki-ye, Îran, Iraq û Sûriye bibine cîranên baş.

**Te bahsa Îranê kir. Em dizanin ku helwesta Tahranê ya di derbarê serxwebûna Kurdistanê de ne baş e. Gelo Îran dikare bibe asteng?**

Rast e. Helwesta Îranê helwesteke baş nîne. Helwesteke ne Îslamî û ne mirovî ye li hember kurdan. Lê belê em gihîştine asteke baş ku serxwebûna xwe ragihînin û helwesta Îranê êdî bê wate ye. Di şerê DAIŞ'ê de Îranê belkî ji gellek dewletan bêtir alîkariya kurdan kirî ye. Lê belê di babeta mafê çarenûsê de tehamula wê ne tehamula Îslamî û ne jî mirovî ye. Em dixwazin ku pêwendiya me ya dîrokî ya ji damezirandina Komara Îslamî ya Îranê heta niha ku nebaş bûye, ji niha û pê ve baştir bibe û ev rikberiya dîrokî veguhere pêwendiyeke aşti-yane. Em û wan xwedî heman olê ne, pêwendiyên me yên dîrokî hene, çand û zimanê me nêzîkî hev e. Hêvîdarim ku Îran van rastiyan têbigihîje û rêz li mafê çarenûsa gelê kurd bigire.

## "Di şerê DAIŞ'ê de me êşa bêdewletbûnê dît"

**Taybet di şerê DAIŞ'ê de kurdan êş û azarên bêdewletbûnê gellek kêşa.Di warê parastina Kurdista-nê de serxwebûna Kurdistanê wê destkeftiyên çawa pêkan bike?**

Di şerê DAIŞ'ê de ger ku kurd xwedî dewlet bûna, ji bo parastina Kurdistanê wê dikaribûna her cûre çekên pêwîst peyda bikirina û bikiriyana. DAIŞ'ê di nav heftêyekê de bajar, gellek navçe û gundewaran dagir kir. Li gel ku RHK'ê daxwaza çekên giran kir jî ne Bexda ne jî dewletên din alîkarî nekirin. Yên ku kirin jî dereng kirin. Çekên ku ketin destê DAIŞ'ê çekên pêşketî bûn û yên Pêşmerge kevn bûn. Hikûmeta Bexdayê jî ne dost bû. Ger ku dost bûya nikaribûya alîkarî bikira jî wê rê bida ku çekên pêşketî bigihîjin Pêşmerge. Lê belê li gel ku DAIŞ dijmineke hov û dirinde ya hevparbû jî Bexdayê rê neda. Ji ber vê yeke, ger ku em dewlet bûna ev karesat nedigihîşte vê astê, wê ev çend zarok, jin û ciwan şehid nebûna û wê Kurdistan dikaribûya bi hêsanî parastina xwe bike. Ji ber tunebûna çekên pêwîst axa me ket destê DAIŞ'ê û me gellek şehîd dan. Hemû ev êş û azar ji ber bêdewletbûnê hatin serê me. Wek fermî dewleta me Iraq bû, lê Iraqê helwesteke dijminane nîşan da ji bo Herêma Kurdistanê.

## "Em deverên nakok bernadin"

**Piştî ragihandina serxwebûnê wê deverên nakok çawa bibin?**

Niha ev dever di deste me de ne. Me bi xwîna xwe wan parast û ne mumkune ku em van deveran ji dest bidin. Ez bawer nakim ku hikumeta Iraqê careke din bikeve van deveran. Eger bi referandûmê hin dever biryar bidin ku bi hikûmeta navendî ve bêne grêdan jî em ê rêz li vê biryara wan bigirin, lê bi zorê û rêbazên leşkerî em ê yek deverekê jî nedin Bex-dayê. Ji niha ve em nikarin bêjin wê Bexda astengiyan derxe yan dernexe, lê ger ku asten-giyan derxe em ê jî birsiva wê bidin.

**Li Herêma Kurdistanê çend meh in xebatên nivîsandina destûreke nû jî têne kirin. Xebatên nivîsan-dina destûrê di çi astê de ne û gelo wê referandûm û encamên wê di destûra nû de çawa cih bigi-rin?**

Ger ku referandûm pêk bê, wê ne li gor destûra nû li gor şert û mercan pêk bê. Her wiha dibe ku referandûm beriya temamkirina nivîsandina destûra nû bê kirin, lewre li ser xalên destûrê pirsgirêk derketine û ji ber vê yekê xebaten nivîsandina wê hatine rawestandin.

**Pêvajoya amadekarî û karûbarên referandûmê wê çawa bimeşe? Wê Parlamento rênivîse diyar bike yan dezgehên din?**

Na ne Parlamento, wê Hikûmeta Herêma Kurdistanê biryar bide û rênivîsê diyar bike. Piştî civînên partiyan wê hikûmet pêşniyaza xwe pêşkêşî Lijneya Hilbijartinê ya Bala bike û wê lijne li gor derfetên xwe dîroka referandûmê diyar bike. Lê beriya wê pêwîst e parlamento jî pêşniyaza hikûmetê pesend bike. Pêwendiyeke destûra nû bi referandûmê tune ye.

**YNK çawa nêzîk dibe û egerî heye ku ji bo referandûmê Peymana Stratejîk a navbera PDK û YNK'e bê aktuelkirin?**

Ez bawer nakim ku ji bo referandûma serxwebûnê pêwîstî bi karekî wisa bê dîtin, lewra ji xwe hikûmetek muşterek heye û YNK jî tê de beşdar e. Ev kêşe, kêşeya hemû gelê kurd e, ne tenê ya PDK û YNK'ê ye.

> Meseleya referandûmê yan jî bidestxistina mafê çarenûsê ne kar û erka partî yan jî rêxistinekê ye. Yanî serxwebûna Kurdistanê babeteke pir mezin e. Ji bo siberoja hemû kurdan girîng e û hemû kurdan eleqedar dike. Ev babeta mezin bi ser daxwaza yek partiyekê nagihîje encameke baş. Ji ber vê yekê divê hemû hêz, alî û hemû pêkhate jî beşdarî vê pêva-joyê bibin û vî karî bi hevre bikin.




Îsmet Sîvereklî



# Zazayê Sîweregî

Sêwregi , yew bajarê Kirmancan a û zaf kozmopolîtîk a. Mabenê royêı Firat û Dîcle/Tîgrîsî de ca gêna. Geliyê kulturê Kommagenê ra zaf nezdî ya û ci ser o îşaretê nê kulturî zaf est ê. Bajar, çi dem de ameyo awankerdene belî niyo. Çimeyanê nuştekiyan de bajarê Sêwregi, wextê Sumeriyan (V. Z. 3400) de awan biyo.

Nêzdiyê sede 70'yê şarê bajarî, kirmanc (dimilî, zaza) ê. Qandê coy, ci re vanê sûka Dimiliya. Sêwregi, bi yew xetê pêra abiriya ya. Cordê na xete de dimilijê Hanefî, cêrdê ci de zî kirdasê Şahfî ciwiyenê. Sêwregi de bê (zewbî) Hanefî û Şahfîiyan, Ezdî û (Cîhudî) zî estê. Ezdî, nezdiyê Wiranşehirî de hetê Qeregeçî de, Cihudî zî Sêwregi miyan de ciwiyenî. Cihudê ke roja ma de Sêwregi de ciwiyenî, pêrkoyê xo Kirman-can (Zazayan) miyan de manenê û biyê Zazayê Sunî. Sêwregi de bi nameyê “Cu-hiya” mehlayêda (taxêda) dîrokî zî esta û şar ci rê vano “Mehlaya Cuhiya.” Meha-laya Cuhiya xeylê eserê ke şaristananê kanan ra mendê est ê. Nê eserî hetê şaredariya Sêwregi ra ameyê restorekerdene.

Cuhiyê Sêwregi, kare qelacî, keçe, asin, zern û hacetanê karî de meşqûl benî. Verê naye hewtay serrî, Sêwregi de Cuhudî ewroyî ra xeylê zêde biyê û ê bi şarê bînî ra werey miyan de ciwiyayî. Demo ke Riha de mensubê kêyeyêde Cuhiyan amey kiştene. Cihuyan ra xeylê kesan welat terk kerd şî rojawayê Tirkiya û uca ra zi bar kerdî şî Îsraîl. Êyê ke pey de mendî, biy Cihûyê Kurdî û dînê xo vurna.

Verê cû nêzdiyê temamê bezirganané bajarî Kirmancî (Zazayî) biy. No rewş, ewro vuriya yo. Sebebe ci zî darbeyê leşkerî (1980) yo. Merkezê bajarî de dize (ke-la/qala) est a. Na dize re vanê Diza Sêwregi. Diza Sêwregi demê Asuriyan (V. Z. 1800-1900) de virazya ya.

Rojhelatê dize de kûçeyêdo tarîxî esto. Şarê Sêwregi, neyî re vano “Kûçeye Şeytanî.” Kûçeye Şeytanî, kûçeyedo exotîk o. Tiya de bi serran şarê oliyê monotheis-tan (oliyê ke yew allahî; monotheizm) bi aştiyane ciwiyayê.

Kûçeyê Şeytanî de dukanê cuhiyan, xiris-tiyanan û bisilmanan (musluman) estî bî. Dukanê yahudiya, rojhelatê (rojakewtedê) kuçeyî de biyê û bi zanatê zern û keçeyan a mijûl biyê. Dukanê Armeniya zî rojawayê kuçeyî de ca girotê û bi hunerê asin, paxir û hacetan a mijûl biyê. No kuçe de ewro zî tayê armenî karê û barê xo berdewam kenê. Zafê cuhî û armaniyan bi dimiliyan a zewijyaye û biyê kirmancî (dimilî).

**Zazayê Sîweregî**

Zazayê Sêwregi, pêroye xo henîfî yê. Kotî ra ameye tiya? Çi çax biye Mus-lumanî, no derheqe de agahiyê bingehî çin ê. Nuştoxo Kirmanc Necmettin Büyük-kaya, kitabê xo “Kalemimden Sayfalar” de bahsê Zazayandê Sêwregi keno. Büyük-kaya, no kitabdê xo vano ke, "Kirmancê Sêwregi hetê Dêrsimî ra ameyê.“

Mehmet Şerif Fırat, kitabdê xo yo "Doğu İlleri ve Varto Tarihi” (Bajarê Ro-jakewteyî û Tarîxa Vartoyî" de ca dano Kirmancandê Sîw-eregî û vano; "Zazayê Sêw-regi, demê Yavuz Sultan Selîmî de ameyê na mintiqa." Fırat, berdewamiya kitabdê xo de, zazayanê Sêwregi keno endamê eşîra "Milî" (Milli-Milan) û na eşîre zî sey serdarê Alaya Hemîdiye nîşan keno.

Sêwregi de 31 eşîrî estê. Nînan ra 14'ê ci eşîrê Kirmancan (dimiliyan) ê. Eşîrê Kirmancan; Bi-caxijî, Kirvarijî, Qerexanijî, Babijî, Heseranijî, Kejanijî, Modanijî, Kosa-nijî, Nasanijî, Bayikijî, Biroderijî, Karajekijî, Doşnikijî, Kurdikijî û Millanijan ra pêk yenê. Nê eşîran ra tewr girsê ci eşîra Bicax û Kirvarijan ê. Kirvarijî, eşîrda Mil (Mîllî) ra, Bicaxijî zî eşîrda Zîrkan ra yê. Sêwregi de eşîrê ke tewr hera û namdar î, Bi-cax, Kirvar, Xerexan, Bab, Heseran û Nasan ê.

**Eşîra Bicaxija**

Eşîra Bicaxija re vanê Kê Heciyan û eslê ci Zirkanij û Dimilî yê. Eşîra Zirkanija, Kurdîstan de eşîrê da zaf heraya û şerê Çaldiranî (1514) de vera Sevafiya alîkariya Yavuz Sultanî kerda.

Eşîra Bicaxija; Heciyan, Osekiyan, Gulerijî, Xilikanijî, Kazanijî, Abikijî, Desma-nijî, Çûkanijî, Kijoyijî, Donayijî, Hamidanijî, Golijî, Bîtikijî, Alxasijî û Olbijan ra pêk yena. "Bicaxijî verê naye 200 serrî Atak (Lice) ra bar kenê yenê Sêwregi û ver dê dewa roye Firatî Hedro de ca benê. Hedro girêdayê Bicaxî bî. No deme de serekê eşîre Hecî Alî Efendî biyo. Hecî Alî Efendî zaf dewletlî beno û çorşmeyê Hedroyî de zaf cayan herîneno. Demêdo kilm de Bicax de beno wiherê qisaye. Dima zî dest pêkeno navenda Sêwregi û tiya de beno wiherê nameyî. Hecî Alî Efendî, serra 1865'ine de san-caxa Sîwergî de beno ardimkerdoxê serekê bel-ediya. O, tena bi na xelate zî nêmaneno, eynî wextê de azayo jûyin ê meqemê qeymakamîtiy zî geno xo dest."

Bicaxijî, xoverdayîşê Şix Seyîdî (1925) de hetê dewlete de ca genê û hemberê şardê xo şer kenê. Dewlete, nê xoverdayîşî ra dima Bicaxija xelatnena û qada fermî de ca dana peyayandê înan. Bicaxijî, serranê 50'ine de rayanê xo danê Demokart Partî (DP) û bi na partiye ra piya hereket kenê û kontrolê Sîw-eregî tewr genê xo dest.

Derbeyê leşkerî yê 1972'an de serekê eşîre Mehmet Celal Bucak û birayê ci Hakki Bucak tepişiyenê û girtîgeyê "Yasıada" de manenê. Mehmet Celal Bucakî, Parlamentoyê Tirkan de xeylê serrî senator û wekîley kerde.

Sêwregi de serra 1979'ine de şerê PKK û Bicaxija dest pêkerd. Dimayê nê şerî, derbeyê leşkerî yê 1980'ine viraziye. Dimayê derbeye, Bicaxijî xeylê bê weng mendî. Senî ke PKK, Kurdîstanê Vakurî de bî wayirê vateyî, dewlete zor da Bicaxija ke hem-berê PKK bivjiyê û şer bikerê. Labelê serekê eşîr Heqî (Hakki Bucak) no waştiş qe-bul nêkerd û ame kiştene. Na qisa, heta ewro ne hetê Bicaxijan ra, ne zî hetê dewleta Tirkî ra ameya pûçkerdene. Dimayê kiştişê Heqiyê Heciya, lajê ci Sedat Bucak bi serekê eşîre û qey mecbur bimano ke sîstemê cerdevaniye yê dewleta Tirkî qebul bi-ker o.

**Eşîra Kirvarija**

Eşîra Kirvarija, zey Bicaxija dimilî yê û kokê ci reseno eşîrda Milî. Kirvarijî, Kê Odabaşiyan ra yê. Eşîra Milî, Kurdîstan de eşîrê da tewr hera û wayîr qisa ya. Vatiş ra gore na eşîre demê Yavuz Sultan Selîmî de hetê Gimgimî ra ameya Sêwre-gi. Dewê eşîre, vakurê rojakewteyê Sêwregi de ca genê.

Kirvarija şerdê PKK û dewlete de (1979) hetê PKK de ca girot û hemberê Bi-caxija şer kerd. Dimayê şerî Xelîl Axa, lajê ci Ahmet Kirvar û xeylê peyayê ci ameyî tepiştene û demê zîndanê Diyarbekirî de mendî. Xelîl Axa, dima ame veredayene û keza tirafîqî de merd. Gore-yê taye rîvayetan, mergdê Xelîl Axayî de destê dewleta tirkî est bî, winî yeno vatenê. Eşîra Kirvarija bi partiya CHP ya hereket kerdê. No rewş dimayê serranê 80'an de vuriya. Kirvarijî, no dem de bi partiya Necmettin Erbakanî SP ya hereket kenê.

Sêwregi de 31 eşîrî estê. Nînan ra 14'ê ci eşîrê Kirmancan (dimiliyan) ê. Eşîrê Kirmancan; Bi-caxijî, Kirvarijî, Qerexanijî, Babijî, Heseranijî, Kejanijî, Modanijî, Kosa-nijî, Nasan-ijî, Bayikijî, Biroderijî, Kara-jekijî, Doşnikijî, Kurdikijî û Millanijan ra pêk yenê. Nê eşîran ra tewr girsê ci eşîra Bicax û Kirvarijan ê. Kirvarijî, eşîrda Mil (Mîllî) ra, Bicaxijî zî eşîrda Zîrkan ra yê. Sêwregi de eşîrê ke tewr hera û namdar î, Bi-cax, Kirvar, Xerexan, Bab, Heseran û Nasan ê.

**Eşîra Qerexanija**

Eşîra Qerexanija, Şema, Uzeyran, Lobikan, Şilanij, Mîrxas, Keva û Siyaxanija ra pêk yena. Dewê Qerexanija, vakurê rojakewtedê Sêwregi de ca gênê. Necmettin Büyükkaya na eşîr ra yo. Goreyê vatenda ey, eşîra Qerexanija eslê xo Dêrsîmij î û kokê ci reseno eşîrda Heseranija.

**Eşîra Babija**

Dewê eşîra Babija vakurê rojakewtê Sêwregi de ca genê. Merkezê na eşîre, başarokê Babî yo. Keloşk, Kifrî, Xirabreşk û Boxçik dewanê na eşîre ra tayê yê. Eşîra Babijan de, sey eşîrandê bînan tayê keyeyê muhîmî estê. Nê kêyan ra tewr namdarê xo, Kêyeyê Şirina û Kandemiran o. “Şirin” û “Kandemir”, peynameyo ke dewlete do ci, o yo.

**Eşîra Heseranija**

Dewê eşîra Heseranija miyandê Sêwregi û Çêrmûge de ca genê. Eşîre, Axaçxanij, Axirmatij, Koranij, Kafkij, Simayij, Heyderanij û Mizraqija ra pêk yena. Dewê ci, vakurê rojawanê Sêwregi de ca genê. Xeylê Heseranijî dewandê Çêrmûge de zî ciwiyenê.

**Eşîra Nasa**

Eşîra Nasa, malbata Simikan, Omeran, Sîsiyan û Alayiban ra pêk yena. Dewê Nasanija vakurê rojakewteyê Sêwregi de ca gênê. Na eşîre, serranê 90'yî ra dima bi eşîra Bicaxijana merkezdê Sêwregi de hereket kerd û bî nam-dar. Seye Bicaxija, bi dewlete ra hereket kena. Xeyle cerdewanê ci estê.



# Kurd bi trawma ya şer re rûberû ne

**Rihan Roj**





Duzgun Ûgûr



Mehmet Kurt



Siyamed Aslan

Şer û pevçûnên ku li nav bajarên kurdan de diqewimin bandorek neyînî li ser derûniya civaka kurd dike. Pispor dibêjin; Şer û pevçûn mirovan bê hêz, bê bawerî û bi hêrs dike. Pispor amaje bi derûniya şer dikin û dibêjin ku pêvajoyên pevçûnan sûdê li tu tiştekî nake û binemaya pêkvejiyanê ji holê radike.



Pevçûnên û şer ku li bajar û navçeyan didomin bandorek neyînî li derûniya civakê jî dike. Psîkolog Siyamed Aslan di derbarê derûniya ku di pêvajoyên berzbûna şer de dertê holê de anî ziman ku şer û pevçûn bi xwe re mirin, kuştin, tîbûn û birçîbûnê tîne, kesên ku di nava şer û pevçûnan de dijîn, bê hêz û bê bawerî dibin, ev pevçûn bi taybetî jî jin û zarokan bê hêz dike, yên ku herî zêde mexdûr dibin jî ew in. Aslan got: "Kesên ku di nava şer û pevçûnan de dijîn zêdetir tûşî nexweşiya "post travmatîk stress disorder" ango travmaya şer dibin. Kesên ku tûşî vê travmayê dibin, şevan nikarin bixewin, zû aciz dibin û her tim bê hêvî dibin."

Aslan anî ziman ku piştî demek bi ser pevçûnan de derbas dibe, kesên ku di nava şer û pevçûnan de mane, dema dengek dibîhizin, xwe davêjin erdê, ditirsin dibêjin qey ew deng dengê bombeyê ye û wiha dom kir: "Dîtina cihên bûyeran jî ji wan re dibe egera tirs û xofê û naxwazin wan deran bibînin. Hin kes jî naxwazin derkevin derve, dema derdikevin jî gelek bi baldar û hertim bi tirs in."

Aslan amaje bi zarok û malbatên ku di van mercan de dijîn jî got: "Şer bandora xwe li ser peywira dayiktî û bavîtiyê jî dike. Dayik û bavên ku zarokên xwe di nava şer de mezin dikin, hin caran nikarin hêrsa xwe kontrol bikin û ji ber vê yekê jî li hemberî zarokên xwe tûndiyê bikartînin."

**"Piştî şer piştgiriya derûnî pêwîst e"**

Aslan diyarkir ku şer bêtir li zarokan bandora neyênî pêk tîne, zarokên ku di van mercan de mezin dibin, naxwazin bi derdora xwe re biaxivin, di tariyê de nikarin bixewin, ditirsin, her tim xewnereşan dibînin. Aslan got ku ev zarok carinan jî binê xwe şil dikin û wiha dom kir: "Şer û pevçûn li ser derûniya zarokên ku diçin dibistanê jî bandorekê neyênî dike. Zarok naxwazin biçin dibistanê, ger biçin jî serkeftî nabin. Ev bandor neyênî di xêzkirina wêneyên zarokan de dide der. Mînak; dikarin resmên trampêlên polîs an jî ambûlansan xiz bikin." Siyamed Aslan da zanin ku heta niha bi dehhezaran kes ji navçeyên ku şer lê didomin û qedexeyên derketina kolanan hene, koçber bûne, ji ber vê yekê zarok nikarin biçin dibistanê û di perwerdehiyê de li paş dimînin û wiha dom kir: "Qadên lîstikên zarokan îro bûne navendên şer. Ji ber vê yekê jî zarok di şûna pêleystokan de bi fîşekên gazê û guleyan dileyizin. Ji ber vê yekê, divê ev şer û pevçûn tafilê bêne rawestandin û birînên zarok û jinan bêne pêçandin." Aslan diyarki ku piştî şer tekez ji bo jin û zarokan piştgiriya derûnî bê dayîn.

**Uğur: Xweparastina travmayê pêwîst e**

Peywirdarê Lêkolînê yê Zanîngeha Dicleyê Psîkolog Düzgün Uğur jî di derbarê derûniya ku di nava şer û pevçûnên ku li heremê pêk tên de da zanîn ku travmayên van rewşan wek bêçariya li hember mirinê dertê holê û bandoreke têkber li ser derûniyê dike. Ugur destnîşan kir ku kurd di vê rewşê de xwe neçar nabine, lê belê ev yek wan bi hêrs dike. Uğur diyar kir ku ji bo xwe ji vê travmayê biparêzin dive kes berxwe bidin. Dema ku berxwe bidin, bandora vê travmayê kêm dibe û ev jî ji bo têkbirina travmayê rêbazeke bi tîn e. Uğur anî ziman ku çareseriya herî baş a vê nexweşiyê berxwedêrî û piştevanî ye. Uğur got: "Îro kurd raste rast vê yekê dike. Kurd bi piştevaniyê bi awayekî bi vê travmayê re serî derdixin, lê ev ji bo hemû kesan ne pêkan e." Uğur da zanîn ku taybet jin û zarok, hin kes nikarin li hember vê travmayê têbikoşîn û ev yek bondoreke xerab li wan dike. Uğur wiha dom kir: "Zarok, birçiyê hînbûnê ne. Dema ku hûn van zarokan 10 an jî 15 rojan di nav malê de bihêlin, ev yek wê bandoreke pir xerab li ser zarokan bike û ev yek wê tîna xwe li ser jiyana wan a siberojê jî bike û ev derûnî wê wek hêrsê xwe bide der."

**"Zarokên duh kevir diavêtin îro li pişt xendekan e"**

Düzgün Uğur amaje bi bûyerên ku zarok dijîn kir û anî ziman ku zarok bi hêrs mezin dibin, dibin YDGH'yî. Ew zarokên ku duh ji ber avêtina keviran hatin cezakirin îro YDGH'yî ne. Uğur destnişankir ku zarokên di kuçeyan de dileyîstin, bi hinceta ku di destê wan de şopên axê hene di girtîgehan de, di bin skenceyan de mane û ev zarok niha li derve ne. Ev dide nişandan ku wê ev pevçûn dirêj dom bikin. Uğur got: "Hûn ji bajarekî re bibêjin derketina derve qedexe ye, kuçe û kolan qedexene, ger hûn derkevin em ê we bikujin. Wê dêrûniya mirovan xerab bibe û ew ê bi hêrs bibin. Rewşa niha pir xeter e. Bê nan û av in, planên wan yên di derbarê jiyanê de tevlihev bûye." Uğur diyar kir ku rayedar jî vê yekê dizanin, bi zanebûn van tiştan pêk tînin û ev ne tenê bûyereke derûnî ye, di heman demê de xwedî binemayeke polîtîk e. Uğur got: "Encamên van bûyeran têgihîştina dadweriyê têk dibe, siberoj nayê zanîn û kontrolkirin. Kesên ku rastî bêdadweriyê tên hêrs dibin, hin kes, bêtir jî ciwan di derûniya tolhildanê de ne, hin jî li benda dadweriyê ne. Ev jî di nav civakê de dibe sedema hêrsê." Uğur destnişan kir ku pêvajoyên pevçûnan sûdê li tu kesan nake, bi awayekî civakî û derûnî jî gelên ku bi hev re dijîn jî ji hev dûr dibin û wiha dawî li axaftina xwe hanî: "Kesên ku dibêjin 'em welat diparêzin û nahêlin ji hev biqete' baweriya pêkvejiyanê ya kurdan a bi dewletê û bi gelê tirk re têk dibin û di navbera wan de dijminahiyeke mezin diafirînin."

**"Bandora neyênî ya şeran heta 60 salan dom dike"**

Civaknas Mehmet Kurt jî di derbarê babetê de anî ziman ku şer û pevçûnan di jiyana mirovan de tirs, bêhêvîtî û peroşiya siberojê der kirî ye û destnîşan kir ku ji ber vê jî di jiyana rojane de birînên mezin çêdibin û got: "Tûndî wek vîrusekê di nav rehên civakê de belav dibe û di jiyana rojane de jî xwe dide der. Di rewşa tûndiyê de jiyan bi asayî nadome. Her tişt ji nû ve xwe bi wate dike. Her wiha piştî rewşa aloz gel bi yekîtiyê jiyana xwe û bajarên xwe ji nû ve ava dike. Ev avakirin bi hêviya beşdarbûna civakê ya jinan, wekheviya regezî û dewletek civakî çêdibe û me ev di şerê cîhanê yê 2. de dît." Kurt amaje kir ku di demên pevçûnan de dêrûniya mirov xirab dibe, biyanîbûn, tenêbûn, di têkiliyên civakî de nebûna asayîşê dibe sedem ku kes xwe tirsonek hest bikin. Kurt diyar kir ku tundî û travmaya şer li ser nifşên demê rasterast û li ser nifşên siberojê jî nerasterast pêk tîne û got: " Dibe ku ev bandor heta 20 salan bidome. Lê di jiyana asayî ya civakê de jî dikare heta 40 salan bidome. Lê emê semptomên tûndiyê heta 60 salan jî bibînin."

Mistefa Pola



# Osman Öcalan: Di redkirina ala netewî de destê îranê heye



Her çend helwesta PKK'ê ya di derbarê Ala Kurdistanê de bê texmînkirin jî, ji ber ku babeteke hestiyar e, heta niha di vê bareyê de PKK'ê daxuyaniyeke zelal nedaye. Lê piştî êrîşa Ala Kurdistanê ya li Girgê Legê, li gel nerazîbûnan, meraqa helwesta wê jî bilind bû. Kevne Endamê Konseya Rêveber a PKK'ê Osman Öcalan da zanîn ku di 2004'an de baskê kurdewar ê PKK'ê hatiye têkbirin û ji ber ku baskê çepgir serdest bûye, Ala Kurdistanê ya ku di 2002'yan de wek fermî ji alî PKK'ê ve hatiye qebûlkirin, cardin hatiye redkirin. Öcalan anî ziman ku redkirina alayê bi redkirina serxwebûnê ve têkildar e û ev bi destê Îranê hatiye kirin.

Piştî ku li Rojava, li navçeya Girgê Legê yê Cizîrê asayîşê di 17'ê Kanûnê Roja Ala Kurdistanê de êrîşî Ala Kurdistanê kir û ev li her çar perçeyên Kurdistanê bû cihê nerazîbûnê, helwesta PKK'ê û Rêveberiya Rojava ya di derbarê Ala Netewî ya Kurdistanê de dîsa hate rojevê. Endamê Berê yê Konsaya Rêvebir a PKK'ê Osman Öcalan beri çendekê di daxuyaniyekê de ragihand ku di 2002'yan de bi îmzeya wî Ala Kurdistanê ji alî PKK'ê ve wek fermî hatiye qebûlkirin. Öcalan ji BasNûçe'yê re axivî û amaje bi helwesta PKK'ê ya di vê babetê de kir û anî ziman ku ji bo têgihîştina vê helwesta PKK'ê divê bê zanîn ku PKK ji alî kî ve tê birêvebirin. Öcalan got: "PKK ji nav tevgera çepgir a Tirkiyeyê derket, lê bi taktîk û stratejiyeke ku nûnertiya kurdan bike dest bi xebatên xwe kir. Lê belê tu carî ji bandora çepgiriyê rizgar nebû. Di nav PKK'ê de baskê çepgir ango koma Enqereyê û baskê kurdewar hene û ev bask her rikberên hev bûn. Carcaran çepgir carcaran jî kurdewar serdest bûn. Lê di destpêka salên 2000'an de ev bask ji hev dûr bûn." Öcalan diyar kir ku dewletên herêmê yên ku bi geşbûna hestiyariya netewî aciz dibûn, hewl dan ku di nav PKK'ê de baskê çepgir serdest bibe û yê netewî têk biçe û got: "Di 2004'an de, aliyê netewî yê ku li dora min kom bû gav bi gav hate têkbirin. Piştî vê pêvajoyê PKK'ê hêdî hêdî dest bi redkirina Ala Kurdistanê ku di 2002'yan de ew bi fermî wek ala netewî qebûl kiribû kir."

**"Îranê Ala Kurdistanê bi PKK'ê da redkirin"**

Osman Öcalan, da zanîn ku di 2002'yan de bi pêşniyaza Zubeyîr Aydar û çend kesên din, wî pêşnûmaya Ala Kurdistanê pêşkêşî konseya PKK'ê kiriye, pêşniyaz hatiye qebûlkirin û li ser navê konseyê wî ev biryarê îmze kirî ye. Öcalan diyar kir ku ji ber ku wê demê baskê netewî bi hêztir bûye ev biryar hatiye qebûlkirin, lê di 2004'an de ji ber zextên Îranê, baskê netewî hatiye tasfiyekirin. Öcalan wiha dom kir: "Ji 2004'an şûnve PKK'ê, gellek caran ragihand ku ew serxwebûnê red dike. Bi vê redkirinê re jî reda Ala Kurdistanê pêk hat. Çi Îslamî, çi jî çepgirên dewletên serdest dema ku mesele tê ser kurdan ji xwe re netewperwer in lê ji kurdan re înkarperest in û ev polîtîkayên hanê bi awayekî di nav PKK'ê de temsîla xwe dibîne. Divê rikberiya PKK'ê ya ji serxwebûnê û Ala Kurdistanê re di vê rîwangeyê de bê dîtin. Bêguman li her çar perçeyên Kurdistanê heman formulasyon ne pêkan e, lê belê ger ku li hin perçeyan serxwebûn pêkan be, ev mafê netewî yê kurdan e û divê kurd vî mafê xwe bikar bînin."

**"Gel û gerîlla ne hevalbendên vê helwestê ne"**

Li ser pirsa me ya di derbarê helwesta gel û gerîlla de Öcalan anî ziman ku di van bebetan de helwesta gel û gerîlla erênî ye û got: "Ger ku anketek bê çêkirin, ez bawer dikim ku wê ji sedî 80 endamên PKK'ê di derbarê serxwebûn û Ala Kurdistanê de erênî bersiv bidin. Hem gel û hem jî gerîlla xwedî helwesteke netewî ye. Di nav PKK'ê de tenê beşeke piçûk a elît ku van red dike heye, lê belê ji ber ku di mekanîzmayên rêveberiyê de serdestin, bi perwerdehî û propagandayê gerîlla û gel di bin bandora xwe de dihêlin."


Osman Öcalan

**"Bawer nakim ku Abdullah Öcalan li dijî serxwebûnê ve"**

Di derbarê helwesta Kekê xwe, Serokê PKK'ê Abdulah Öcalan de jî Osman Öcalan anî ziman ku Kekê wî Abdulah Öcalan, li gel ku netewperweriyê red neke jî, xwedî nêzîkahiyeke çepgir e, lê belê ew çepgiriyê bêtir wek amûrekê bikar tîne û bi vî awayê xwe ji çepgirên din vediqete. Öcalan wiha dom kir: "Ji bo Birêz Abdulah, kurdayetî nirxeke pîroz e û xwedî lê derdikeve. Lê belê li cem wî, di nav kurdayetî û çepgiriyê de hevsengiyek heye, yekî ji ya din girîngtir nabîne. Abdulah, tu carî bi şêweyeke teng nêzîkî meseleyan nabe. Ez bawer nakim ku ew li dijî serxwebûn an ji dewletbûnê be. Lê belê ku şert û merc pekan nebin jî, ew di vê helwestê de ne pêgir e.

**"Êrîşa Ala Kurdistanê şaşiyeke mezin bû"**

Di derbarê êrîşa Ala Kurdistanê ya li bajarokê Girgê Legê ya Rojava de jî Osman Öcalan rexne li PKK'ê kir û anî ziman ku PKK'ê şaşiyeke mezin kirî ye got: "Ne gelê Rojava û ne jî hemû kurd wê vê êrîşê qebûl nekin. Divê PKK vê şaşiya xwe bibîne û helwestên xwe careke din binirxîne. Divê helwesta xwe ya dijayetiya Ala Kurdistanê biguherîne. Dibe ku Ala Kurdistanê pîroz nebîne, lê belê mafê wê tune ye ku dijayetiya wê bike. Êrîşa nasnameya gelê kurd bi çi sedemê dibe bila bibe naye qebûlkirin.

**"Serhildanên bajaran rêbazeke şaş e"**

Di derbarê şerê ku li bajarên Bakur de jî Öcalan amaje bi wê yekê kir ku PKK, nêzîkî salekê ye ji kesayeteke behredar ê wek Apo bêpar e, biryar bêyî Apo têne stendin, ji ber vê yekê kapasîteya rêveberiya PKK'ê ya ku biryarên rast bide tune ye û bi vê kapasîteya xwe biryara pêngaveke şerê sengerî daye û ev şer dikare ziyaneke mezin bide PKK'ê. Öcalan mînaka sala 92'yan a şerê sengerî ya li Şernexê da û dom kir: "Wê salê PKK'ê ezmuneke serhildane pêk anî, lê e ezmûn bu sedema gellek şehadetan û bi ser neket. Piştî vê ezmûnê Birêz Abdulah Öcalan serhildan û şerê sengerî ji rojeva xwe derxist. Di mercên îroyîn de her çiqas bi dafdana hêzên derve PKK'ê dest bi pêngaveke wiha kiribe jî, li Kurdistanê, li dij teknîka herî pêşketî hewldanên serhildanê bi ser nakevin û wê ziyaneke mezin bide PKK'ê. PKK'ê di pêvajoya aştiyê de amadekariyên şer kir û ev rêbaz ziyanê dide kurdan. Tekoşîna siyasî tekane rêbaza serkeftinê ye û ger ku di serokatiya Erdoğan de mafê kurdan bê dayîn bila bibe. Dive aliyê siyasî bi dûrişmên çend çepgirên tirkan tevnegere."

**"Sala bê sala dewletbûnê ye"**

Di derbarê amadekariyên referandûmê yên li Başûr de jî Öcalan anî ziman ku li Kurdistanê rikberiya xeta serxwebûnparêz û xeta înkarê heye û dom kir: "Ev xeta înkare li Başûrê Kurdistanê, di dema ku şerekî dijwar û qeyraneke mezin a aborî hebû de, li dij serokatiya Birêz Barzanî şerekî da destpêkirin. Lê bi rizgarkirina Şengalê û bi gavên dîplomatîk ev êrîş hatin rawestandin. Vê xetê li Bakurê Kurdistanê jî xwest ku Apo berteraf bike. Bi giştî hate xwestin pêşî li serokatiyên kurd bê girtin. Lê belê Başûr, her hem bûye navenda tevgerên kurd û îro ji her demê bêtir nêzîkî serxwebûnê ye û ez bawer dikim ku sala bê ew ê bibe sala dewletbûna Kurdistanê û bi vî awayî ew ê rêya hemû tevgerên kurd diyar bike."



## Pirsgirêka Kurd û Îslamiyan

# Ji konferansê banga agirbestê

**Tekoşîn Kew**

Li Zanîngeha Artuklu ya Mêrdînê "Konferansa Pirsgirêka Kurd û Îslam(ger)" ve di navbera 19-20'ê Berfanbarê de hate lidarxistin. Di komxebatê de kesên pispor, akademîsyen, tevgerên Îslamî û zanyar cîh girtin. Tevgera Azadî jî beşdarî komxebeta ku 2 rojan berdewam kir bû. Her wiha komxebata ji 2 beşan pêk dihat bi beşdariya gelek zanyar û akademîsyanan birêve çû. Axaftina vekirinê ya komxebatê ji aliyê Rektorê Zanîngeha Artukluyê Prof. Dr. Ahmet Ağırakça ve pêk hat. Komxebat bi hişyarmendiya pirsgirêka kurd ya li Rojhilata Navîn deng da û ji aliyên civakî, zanistî û îslamgeran hate nîqaşkirin.

**Pirsgirêka Rojhilata Navîn**

Pirsgirêka kurd di raya giştî de bûye pirsgirêkek mezin û her wiha li erdnîgariya îslamê de cîhekî gelekî giring girtiye. Ev komxebat jî di derbarê kurd û îslamê de ji aliyê îslamiyan ve hat nîqaşkirin û şîrove kirin. Sıdkı Zilan ê Sekreterê Giştî yê Tevgera Azadiyê jî beşdarî wê komxebatê bû. Sıdkı Zilan ragihand ku komxebat bang li aliyê Kurdistanî û îslamî kiribûn û li ser pirsgirêka kurd nîqaş hatibûkirin, her wiha ji aliyên îslamî ji bo çareserkirina pirsgirêka kurd li ser zimanê siyasetê û çapemeniyê hatibû axaftin. Zilan axaftina xwe wiha domand û got: "Em wek aliyê Kurdîstanî berpirsiyarî me çiye û berpirsiyariya aliyên îslamiyan çi ye û divê em çibikin em li ser vê na axivîn. Lê her kes wek hev nafikire hin xeta Kurdistanî hin ji wan jî di xeta îslamî de cîh digrin û wisa çavdêriyê xwe dianîbûn ziman. Doza kurd û Kurdistanê di rojeva cîhanê de ye û pirsgirêka kurd li erdnîgariya îslamê li Rojhilata Navîn pirsgirêka herî mezin e. Me jî di vê çerçoveyê de hin kesên din naskirin û me pêşniyarê xwe ji wan re kir. Mijara herî girîng biryardayina banga agirbestê bû."

**"Sûda şer û pevçûnan ji bo gel tuneye"**

Di rojevê de şer û pevçûn û qedexeyên derketina kolanan heye û di Komxebata Pirsgirêka Kurd û Îslam(ger) an jî ev rojev hebû. Di derbarê cîh girtina rojevê di komxebatê de Sıdkı Zilan amaje pê kir ku li herêmê şerekî dijwar heye û wek tê xuyakirin ku bi tûndiyê ev pirsgirêka nayê çareserkirin. Zilan axaftina xwe wiha domand: "Ev pirsgirêk ne ya îroj e ev 80 sal in ku ev pirsgirêk heye û şer û pevçûn didomin. Lê belê sûda şer û pevçûnan ji bo gel tuneye. Em tûndiyê ji her du aliyan jî rexne dikin. Em dewletê sûcdar dikin û PKK jî divê dev








"Ji aliyên îslamiyan gelek pêşniyarî hate dayîn lê ew pratîze bikin nekin ez ji sedî sed baş nizanim. Lê ev komxebat bi taybetî ji bo banga aliyên îslamî ku kêmasiyan temam bikin û vê mijarê berbiçav bînin. Me jî di vê çerçoveyê de hin kesên din naskirin û me pêşniyarê xwe ji wan re kir. Mijara herî girîng biryardayina banga agirbestê bû."



ji çalakiyên tûndî berde û jixwe gelê Kurdîstanê jî ji sedî sed hemberî vê konseptê ye. Ji aliyekî din ve jî me ji aliyên îslamiyan re pêşniyara zimanê aşitiyê kir."

**Di komxebatê de doza Kurdistanê jî hat axaftin**

Di komxebatê de doza Kurdistanê jî hat axaftin û li ser çareseriyê zanyar û akademîsyen bêşdarî vê axaftinê bûn Sıdkı Zilan di derbarê vê axaftinê wiha axivî: "Doza Kurdistanê dozek heq e û divê tenê li ser PKK'ê neyê meşandin. Ev mijar divê were rexnekirin û doz ne doza PKK'ê û dewletê ye doz doza Kurdistan û dewletê ye. Me jî di vî warî de rexneyê xwe anîn ziman lê ji bo her du aliyan jî." Zilan diyar kir ku aliyên îslamî jî divê xwe dîsîplîne bikin û kêmasiyê xwe derxînin holê ku biryarên bi tendurîstî bistînin û kêmasiyê xwe temam bikin. Zilan wiha berdewam kir û got: "Ji aliyên îslamiyan gelek pêşniyarî hate dayîn lê ew pratîze bikin nekin ez ji sedî sed baş nizanim. Lê ev komxebat bi taybetî ji bo banga aliyên îslamî ku kêmasiyan temam bikin û vê mijarê berbiçav bînin. Ji bo aliyên îslamî me di derbarê bikaranîna çapemenî û zimanê çapemeniyên wan, di warê zimanê siyasî û li hemberî tûndiyê de pêşniyariya zimanekî erênî kir. Wek tê zanîn ku zimanê dewletê û çapemeniya di bin bandora wê de ne zimanê zanîstî, ne zimanê siyasî û ne zimanê aşitiyê bû. Me ev li hemberî HDP'ê û li hemberî hêzên kurda yên din jî dît. Her çiqas kêmasî hebe divê mirov bi zimanekî aştiyane wan kêmasî û pirsgirêkan çareser bike. Bi neyartiyê ev çareser nabe."

**"Kelecana me vala derket"**

Nivîskarê kurd Sedat Doğan jî wek guhdarvanekî beşdarî komxebatê bibû û ji BasNûçe'yê re çavdêriyên xwe anî ziman û wiha got: "Ez bi kelecaneke mezin beşdarî komxebatê bûm ku min digot ew ê wijdanên îslamî ji bo gelê kurd bang li dewletê bike û wê bêje 'dagirkeriya leşker û polêsan ji Kurdistanê rakin, dev ji herikandina xwînê berdin, xendekan bigrin û her çawa bibe em li aliyê sîvîl û mezlûma ne, zimanên me û netewên me çi be bila bibe em brayên hevîn û em li dijî tûndiyê nin' lê mixabin em bi bernameyeke cuda rû bi rû man û ew kelecana me dema Rektorê Zaningeha Artukluyê axivî têk çû." Doğan amaje pê kir ku rektorê zanîngehê di axaftina vekirinê de li ser bingeha pirsgirêka kurd ne bi akademîk, ne bi zanistî û ne bi mirovatî ne sekinî û dijberiya kurdan kir. Doğan wiha got: "Dema Rektorê zanîngehê axivî guhdarvanekî nerînên xwe anî ziman û ji rektor re ev got, 'Mamoste hûn dibêjin ola îslamê ola aşitiyê ye, lê hûn hin dewlet û mirovan bi neyartiyê ji xwe dûrdixin' wê demê Rektorê zanîngehê bi awayekî nerm û bi wateya an guhdarbike an jî salonê bi terikîne ew guhdarvan hişyar kir." Doğan daxuyand ku rektor behsa rewşa aloz, komkujî, qedexeya derketina kolanan û kuştinan jî nekir.






Piştî ku şerê di navbera PKK'ê û dewletê ji çiyayan daket bajaran û li dû ragihandinên xweseriyên cewherî biryarên qedexeyên derketina derve re li gellek navçeyên dîrokî yên Bakur kuştin, koç, ziyanên mîrateyên dîrokî re li navçeyên ku şer rû didin perwerdehî jî rawestiya. Pevçûnên ku li heremê diqewimin, bandora xwe ya neyênî jî li ser zarokan dike. Ji destpeka van pevçûnan re 44 zarokan jiyana xwe ji dest dane, 52 zarok jî birîndar bûne. Her wiha li Amed, Mêrdîn û Şirnexê 317 dibistan hatine girtin, 131 hezar û 85 zarok ji perwerdehiyê bêpar mane û 2 hezar û 416 mamoste jî nikarin perwerdehî bidin. Li ser rawestandina perwerdehiyê nunerên Egîtîm-Senê bertek nişan dan û xwestin ku pirsgirêka kurd bi rêbazên aşitiyane bê çareserkirin.

# Zarok bê dibistan man

**Reyhan Akgün**

Li Bakûrê Kurdistanê, ji destpêka pêvajoya hilbijartinên 7'ê Hezîranê ve bi daxuyaniyên rikber û piştî teqîna Pirsûsê û kuştina dû polêsan re agirbesta ku di dawiya 2012'an de hatibû ragihandin qediya û şerê navbera PKK'ê û dewletê roj bi roj gurtir bû. Piştî van geşedanan bi kolandina xendekan û ragihandina qedexeyên derketina derve re şer arasteyî bajaran bû û ev yek jî bû sedema mexdûriyetên mezin ên mirovî; Kuştinên sivîlan, koç, rûxandina mîrateyên dîrokî û her wiha rawestandina perwerdehiyê hin ji encamên şer in. Hevserokê Şaxa Egîtîm-Senê ya Amedê Sadretîn Kaya diyar kir ku li Tirkiyeyê perwerdehî jixwe bi pergala 4+4+4 şkestekê xwaribû û piştî 7'ê Hezîranê ku li heremê qedexeyên derketinên kolanan, pevçûn û kuştinan perwerdehî jî rawestiya ye. Kaya destnîşan kir ku li heremê bi binpêkirina jiyana mirovan re mafê perwerdehiyê jî tê binpêkirin û diyar kir ku li gor daneyên Miduriyeta Perwerdehiyê ya Navçeya Surê, ji meha Îlonê heta niha 14 dibistan hatine girtîn, ji ber vê yekê10 hezar û 768 xwendekar ji perwerdehiyê bêpar mane û 427 mamoste jî nikarin peywira xwe bi cîh bînin. Kaya anî ziman ku li Navçeya Surê gelek dibistanan ji pevçûnan ziyan dîtine, li Taxên Tekel, Konak û Mescîdê yên Farqînê, ji ber qedexeyên derketina derve demek dirêje ku perwerdehî rawestiyaye û dom kir: "Li Farqînê, Dibistana Heremê ya Leylî ku yek ji mezintirîn dibistana herêmê ye, ji aliyê polêsên tevgera taybet ve tê bikaranîn." Kaya amaje bi qedexeyên Surê jî kir û got: "Li gel rawestandina perwerdehiyê, dengên çek û teqînan jî dêrûniya zarokan têk dibe. Li navçeyên din jî ji ber rewşa aloz, jî ji sedî 40 dê û bav zûtir zarokên xwe ji dibistanan dibin. Helîn Şen, Berat Guzel, Abdulkadir û Çekwar'ê ku hatin kuştin jî xwendekarên me bûn. Niha dema ku em ji zarokan dipirsin xeyala we çiye dibêjin 'Cîhekî bê pevçûn û cihanek aram."

**"Yên xendekan dikolin nifşên 90'an in"**

Sadretîn Kaya ji ber nebûna perwerdehiya zimanê zikmakî bêhevsengiya zarokên Kurdistanê û yên rojavayê Tirkiyeyê destnîşan kir û anî ziman ku ev zarokên ku niha nikarin biçin dibistanan, zarokên malbatên ku di salên 90'an de ji gundan bi zorê hatibûn koçkirin in. Kaya da zanîn ku roja ezmûna TEOG'ê ya telafiyê hatiye kirin û got: "Zarok di bin siya şer de ketin ezmûnê û divê ev ezmûn bê betalkirin. Lewre di vê aloziyê de zarok nikarin di ezmûnan de serkeftî bibin." Kaya, balê kêşa ser gringiya pêşxistina demokrasiyê û dom kir: "Divê ev feraset bê guhertin. Ger ku ev nebe wê zarokên niha jî wek yên 90'an mezin bibin û ev şer wê 30 salên din jî bidome. Zarokên niha di şûna pêlestokan bi çekan dileyizin. Ev pevçûn encamên polîtîkayên asîmîlasyonê ne. Serokwezîr dibêje; "Me polîtakaya asîmîlasyonê qedand." Lê yên ku xendekan dikolin nifşên 90'an in. Ger ku mirov bi çand û nasnameya xwe nejîn, ev tê wê wateyê ku asimîlasyon heye. Ger ku asîmilasyon hebe, encam jî ev e." Kaya, di berdewamiya axaftina xwe de anî ziman ku dewlet dikare kêmasiyên perwerdehiye çareser bike, lê nikare travma û ziyanên li ser derûniya zorakan çareser bike. Kaya metirsiya di derbarê domkirina şer de anî ziman û got: "Pirsgirêka kurd, 40 sal in bi polîtîkayên înkarê nehatiye çaresekirin. Ji bo pêşketina demokrasiya Tirkiyeyê û siberojeke ku ev zarok azad bijîn 'Hevpeymana Dolmabahçeyê' pir grîng e. Ji ber vê yekê divê tekez pêvajoya çareseriyê ji nû ve destpê bike."

**"Di demên pêş de wê ziyanên derûnî derkevin holê"**

Hevserokê Şaxa Egîtîm-Sena Şirnexê Serhat Ugur jî destnîşan kir ku li Navçeyên Silopî û Cizîrê ji ber qedexeyan 170 dibistan hatine girtîn, 80 hezar xwendekar û 300 mamoste nikarin biçin dibistanên xwe û diyar kir ku ji ber peyama SMS'ê ya Midurîyeta Perwerdehiyê nêzikî 3 hezar mamoste ji navçeyê çûne. Ugur da zanîn ku dibistan niha ji aliyê polêsên hêzên taybet ve têne bikaranîn û li yên vekirîne jî perwerdehiyeke tekûz nayê kirin. Ugur anî ziman ji ber ku ji jiyana mirovan di xeteriyê de ye û rêjeya zarokên ku diçin dibistanan ji sedî 50 daketiye û dom kir: "Ez di salên 90'an de li Şirnexê mezin bûm û hê jî bi wê travmayê dijîm. Lê rewşa niha ji ya wê demê xerabtir e. Dibêjin emê di meheke de perwerdehiyê telafî bikin, lê ev ne pêkan e. Di 13'ê Adarê de ezmûna YGS'ê heye û ev zarok ji bo vê ezmunê ne amadene. Di demên pêş de wê ev zarok semptomên wekî posttravmatîk bijîn. Hin zarok wê lal bibin, hin ji jiyanê dûr bikevin û hin jî bi hêrs bibin." Ugur anî ziman ku çûyîna mamosteyan têkiliya zarok û mamosteyan qut kiriye û niha ew nizanin ku wê ev pirsgirêk çawa çareser bibe. Ugur got: "Ji bo ev şer raweste, divê rojavayê Tirkiyeye û yên ku dengê xwe ji bo gelê Filîstênê bilind dikin ji vî şerî re bêdeng nemînin."

**"Destûreke ku pêkvejiyanê diparêze"**

Hevserokê Şaxa Egîtîm-Sena Nisêybînê Kadrî Baysal jî anî ziman ku li Nisêybînê û Kerboranê 133 dibistan hatine girtîne, 40 hezar û 317 xwendekar û 1689 mamoste ji ber qedexeya derketina derve nikarin biçin dibistanan. Baysal amaje bi bandora şer û qedexeyan a li ser zarokan kir, anî ziman ku ev bûye sedema travmayên mezin û dom kir: "Zarok di bin siya şer de dijîn û bandora vî şerî di rûyê zarokan de der dibe. Ji ber vê yekê, ji bilî telafîkirina rawestandina perwerdehiyê, divê piştgiriya rehabîlîtasyonê bê dayîn. Ger ku ev nebe ev serpêhatî neyînî wê di jiyana wan ya civaki de ziyanên mezin pêk bîne." Baysal da zanîn ku ezmûna TEOG'ê û ya telafiya wê hatile kirin, lê ji ber li Nisêybînê qedexeya derketina derve hebûye ev ezmûn li vê navçeyê pêk nehatiye û ji ber vê yekê jî 3 hezar û 200 zarok neketine ezmunê. Baysal got: "Ji bo ku zarok bikevin ezmên xwe û perwerdehiya xwe bidomînin, divê ev qedexe bêne rakirin, polês û leşker jî taxan derkevin. Dibê ev pirsgirêk bi rêya diyalogê bê çareserkirin. Di encamê de divê destûreke ku ji bo hemû gelan pêkvejiyanê pêkan dike û wê diparêze bê çêkirin"


Kadri Baysal



Sadrettin Kaya



Serhat Ugur

Tekoşîn Mêrdînî

Girtina Xabûrê karesata aborî ye

# Di 2 hefteyan de 300 milyon dolar xesar



Çetin Sasa · Mehmet Ari · Mesut Altun · Newaf Kılıç

Deriyê Sînorê Xabûrê ji 11'ê berfanbarê ve ji ber qedexeya derketina kolanan ên li Silopî û Cizîrê destpêkiribû hatiye girtin û gelek ajovan, pargîdanên barkêşî û xwedî mehsûl û derametên ji derveyê welêt hatiye û tirêle û kamyonan de sekinîne bi awayekî neçar li heviya çareseriyekê ne. Li Nisêbîna navçeya Mêrdînê jî ji ber ewlehiyê rêya hewreşîmê hatibû girtin û ajovan êdî di navbera deriyê Xabûrê û Nisêbînê asê mane.

Li ser rewşa ku girtina deriyê Xabûrê Mehmet Ari yê xwediyê pargîdana barkêşiyê wiha axivî û got: "Ji 100'î 90 em di bin bandora vê bûyerê de man. Her wiha aboriya me jî têk çû. Senedên me , krediyên me û bono yê mekînên me hemû di sekinandinê dene em nikarin bidin. Ger ev derî venebe em nikarin deynê xwe bidin û divê ev deynên me an werin taloq kirin an jî bi alîkariya dewletê çareseriyek bê dîtin. Êdî em ketine heyra ajovan û tirêl û kamyonên xwe. Rûsya ambargo daniyê ser curêyê xwarinê , Iraq jî hemû malên Tirkiyeyê boykot dike aboriya herêma me jî li ser Iraqê ye û niha jî derî girtiye ev bandorê li hemû welatî dike ne li me tenê." Mehmet Arî ragihand ku ajovanên wan li ser rêya asê mane û bê av û bê nan manê, ev 13 roje ku di herêma xetere de mane. Hin ji van li Iraqê asê mane. Yên ku dikaribin vegerin li ser Hewlerê bi balafiran derbasî Tirkiyeyê dibin. Di derbarê pargîdanên barkêşiyê yên Tirkiyeyê jî Ari amaje pê kir ku xwediyê bar doza gihîştina barên xwe dikin û got: "Xwediyê bar dibêjin barê me bigihîjînin cîhê wan an jî barê me li me vegerînin lê ne em dikarin derbas bibin ne jî em dikarin vegerin. Ew jî ji rewşa me fêm nakin. Hin ji wan dibeje ji ser Îranê barê me derbasî Iraqê bikin lê nizanin ku rêya Nisêbînê jî girtiye û ajovan û mekînen me di navbera Xabûr û Nisêbînê de asê mane."

**"Ajovan di rewşeke xirab dene"**

Gelek ajovan beriya rêya hewreşîmê ya li ser Nisêbînê were girtin bi serê xwe û bê tirêla xwe vegeriyane malên xwe. Seyfettin Demir jî yek ji wan ajovana ye û got: "Tirêla min ev 9 roje kû li Silopiyê ye û beriya qedexeya li ser rêya Nisêbînê were îlankirin min bi awayekî xwe derdasî Qoserê kir. Kesî me li mekînê xwe siwar nedikirin. Her dever di nav şer debû û ajovan jî ditirsin. Em ne dikarin tirêla xwe bînin û em ne dikarin herin hinda tirêla xwe. Xwediyê bar û tirêleyê jî zexta li ser min dikin ku ez herim hinda tirêlê û tirêlê ji wir werînim." Li ser bandora aboriya Deriyê Xabûrê de Seyfettin Demir wiha axivî: "Ger ez ajovantiyê nekim ez û 6 zarokê xwe emê birçî bimînin. Ji bo min pirsgirêka herî mezin ew e ku çavê zar û zêçên min li dest û xebata min tenê ye. Derdê me ajovanan ji jinên me bipirsin ew ji me çêtir wê bînin ziman." Sîlêman Emer jî ajovanekî ku li ser rê asê mabû ye û mexdûriyeta xwe wiha anî ziman: "Ev leyîstike ke mezine li ser me kurda divê em şiyarbin. Êdî em nikarin li navçeya xwe ji ber vê zilma dewletê êvarekê bi malbata xwere derkevin derve û çayekê vexwin. Çima ev şer li Kurdîstanê tenê heye. Ez ajovanim û debara xwe bi vî karî dikim. Ev 17 roje ku tirêla min li ser rêya Silopî yê sekinî maye û em nikarin derbasî Başûrê Kurdîstanê bibin. Ev derî ne wek deriyê Gurcîstan û Îranê ye ev derî deriyê debara meye deriyê hebûna meye û deriyê navbera Kurdistana Başûr û Bakur e. Ger ev derî tê girtin jiyana me jî bi ber girtinê ve diçe. Aboriya me gelê herêmê bi vî deriya ve girêdayiye."

**Tirêle bi barên xwe li parka sekinandîne**

Xwediyê pargîdana bi navê Baday Turê ya tirêleya Süleyman Baday jî ragihand ku ev qedexeya derketina kolanan , bûyerên li Kurdîstanê û Deriyê Xabûrê yê hatiye girtin ku ev hemû tişt ji mexdûrkirina kurda ye û Baday wiha dom kir: "Çavê dewletê lêye ku me pergende bikin. Ji dema deriyê Xabûrê hatiye girtin ve 10 tirêleyê min li Iraqê, 6 tirêleyê min li Silopî yê û 15 tirêleyê min jî barkirî li parka tirêleyan sekinandî maye. Li ser İpek Yoluyê hûn li kîjan parka kamyon û tirêleyan binêrin hûn ê bibînin ku hemû tirêle bi barên xwe li wir sekinandiye. Hin barên li tirêleyan barkirî zad, xurek û xwarinin. Ger çend rojên din ew bar di tirêleyan de bi sekine wê xerabibe û êdî tiştekî ku em bikaribin bikin jî namîne." Xwedî û xebatkarên yên parka tirêleyan jî ragihandin ku tu carî parkên me wisa tijî nebibûn lê ev malxerabûne ke ji bo ajovan û xwedî pargîdanan.

**"Hilberîner li bazarên nû digerin"**

Endamê Odeya Pişesazî û Bazirganiyê ya Amedê Mesut Altun di derbarê girtina Deriyê Xabûrê de ragihand ku ji sedî 90 hawirde û hinardeya herêmê bi welatên Rojhilata Navîn re tê kirin û deriyê li Rojhilata Navîn jî bi Deriyê Xabûrê tê vekirin. Altun wiha domand: "Ev rewş wek dema ne asayî ye û ne diyare jî. Ev jî prsgirêkê mezin derdixe holê ji bo hilberîneran. Hiberîner ji bo berhemên xwe malên xwe bifiroşin ji bilî Iraqê û Rojhilata Navîn berê xwe didin bazarên nû. Li Amedê pargîdanên hilberînê êdî li Efrîka yê li bazarên nû digerin.

**"Yên herî di bin bandorê de pîşesazin"**

Sekreterê Giştî yê Odeya Pişesazî û Bazirganiyê ya Mêrdînê Çetin Sasa jî li ser rewşa Deriyê Xabûrê û bandora wê yî li ser aboriyê amaje pê kir ku di demên asayî de jî car caran Derîyê Xabûrê dihate girtin û astengî derdiket holê. Sasa axaftina wiha berdewam kir: "Ji ber rewşa aloz ya li herêma me Deriyê Xabûrê hatiye girtin û hemû herêm di bin bandora wê de maye. Lê belê ev bi piranî li ser pîşesaziya bandor kir ku ew li rastî dozên tazmînatê dimînin û bi bankayan re jî bo sened û krêdiyên xwe rû bi rû manin. Wek bazirganan pîşesaz jî di bin bandorek mezin dene. Her wiha ajovan û pargîdanên barkêşî jî neçar manin û li hêviya çareseriyekê ne. Ji ber daneyên rasterast di destên me de nîne em nikarin bêjin ewqas zirar daye ajovan, pargîdan û bazirganan."

**300 mîlyon dolar zirar heye**

Serokê Komeleya Pîşesaz û Bazirganên Tirkiye û Iraqê Nevaf Kiliç jî daxuyand ku ji 14'ê Berfanbarê û vir de deriyê Xabûrê girtiye û hinardekarên herêmê pergende bûnin, di salekê de 700 hezar caran çûn û hatin di wî deriya de têkirin û bi biryara girtinê ve aboriya herêmê têk çûye. Kiliç axaftina wiha dom kir: "Iraqê piştî Almanya yê duyemîn welate ku hinardeyê em pêktînin. Piştî pirsgirêka ewlehiyê derket holê asta hinardeyê ji mîlyar dolarekê daket 500 mîlyon dolarî bi dûre hinekî rast bû li derdora 750 mîlyon dolarî ve çû û hat. Lê belê dema deriyê Xabûrê hate girtin 300 mîlyon dolar em ketin zirarê û wendayîyeke mezin e ji bo aboriya hemû welatî. Ji aliyekî din ve jî ji ber derî girtiye barên li lîmana Mêrsînê jî nayên barkirin û hemû bar di koyteyniran de sekinî maye."



Deriyê Sînorê Xabûrê ku ji ber qedexeya derketina kolanan ên li Silopî û Cizîrê hatiye girtin û gelek ajovan, pargîdanên barkêşî û xwedî mehsûl û derametên ji derveyê welêt hatiye û tirêle û kamyonan de sekinîne bi awayekî neçar li heviya çareseriyekê ne. Gelek ajovan di navbera deriyê Xabûrê û Nisêbînê asê mane. Di nava dû hefteyan de 300 milyon dolar zirar a maddî heye.

Tuwanê Dodkî



Mîrê nenas ê helbesta kurdî:

# ŞIKOYÊ HESEN

Helbestkarên kurd ên kafkasan ku ji bayê wêjeya sovyetê tîn digire û bi behredariya xwe ew ba bi deng û rengên kurdî dixemilînin û bi helbesta kurdî re direqisînin. Ji wan helbestkaran yek jî Şikoyê Hesen e. Çîroka Şikoyê Hesen jî wek ya zimanê wî bi êş û azar e, lê mixabin ku wî weke zimanê xwe nekaribûye berxwe bide û bi xencera kurmancî xwe avêtiye nav agirê xeman. Helbestkarê me Şikoyê Hesen, di helbestên xwe yên ku li dû xwe hiştiye de motîfên çanda kurd bi têmayên helbestiyeke hosteyî bi kar anî ye. Di helbestên wî de çêjên; niştimanî, humanîzm û bîreweriya neteweyî hene. Şikoyê Hesen her çiqas kedek mezin li ser zimanê kurdî dabe û gellek berhem li dû xwe hiştibe jî, ji alî kurdan ve û bi taybetî jî ji alî kurdên Kurdistanê ve qet nehatiye nasîn û mixabin hê jî nayê nasîn. Şikoyê Hesen di dema xwe de, li gel helbestkar û nivîskarên wek; Sihîdê Îbo, Simoyê Şemo, Fêrikê Ûsiv û Mikaîlê Reşîd, ji pirtûkxaneya kurdî re gellek berhemên wêjeyî diyarî kiribe jî, ji ber ku li ser jiyan û berhemên wî tu lêkolînên berfireh nehatine kirin, em di derbarê wî de pir kêm agahiyan dizanin.

Malbata Şikoyê Hesen jî wek gellek malbatên kurd, di Şerê Cîhanê yê Yekem de, ji ber zext û zora ku bi taybetî li ser Ermen û Kurdên ezidî tê kirinê, ji bêçarî, ji gundekî Têkora girêdayî bajarê Qersê ye koçî Ermenistanê dikin. Li gor hin agahiyan, Şikoyê Hesen di 17'ê Gelawêja 1928'an de, li Gundê Camûşvana Biçûk ê navçeya Axbaranê ya Ermenistanê çavên xwe li jiyanê vekirî ye. Li vê devera ku Şikoyê Hesen lê hatiye dinê, 11 gundên din yên kurdên ezidî ku girêdayî navçeya Axbaranêne hene. Her wiha em dizanin ku piraniya nivîskar, helbestvan û ronakbîrên kurdên Sowyetê jî ji vê navçeyê derketine.

Şikoyê Hesen, di 5 saliya xwe de bavê xwe Hesenê Mido wunda dike, ji ber vê yekê ji alî apê xwe ve tê xweykirin. Şiko, di heman salê de dest bi xwendina xwe ya dibistana seretayî dike. Piştî ku îcazeya xwe ya dibistana seretayî û ya dibistana navîn werdigire, vê carê dest bi xwendina Beşa Zimannasî ya Koléja Zanistên Rojhelat a Zanîngeha Yêrîvanê dike û di 1953'yan de xwendina xwe ya zanîngehê jî diqedîne û dest bi mamosteyiyê dike.

**Di helbesta kurdî de pêleke nû**

Şikoyê Hesen, piştî ku zanîngehê temam dike, di navbera salên 1954 û 1957'an de mamosteyiya zimanê ermenîkî dike. Dûre di beşa kurdî ya Radyoya Yêrîvanê de dest bi edîtoriyê dike û di navbera salên 1959 û 1961'an de jî şêwirmendî û wergêrî dike. Di sala 1961'an de bi mebesta xwendina perwerdehiya bala diçe Leningrad'ê û li ser zimannasiyê doktora dike. Di sala 1965'an de li Înstîtuya Gelên Asya û Afrîka, Beşa Kurdolojiyê temam dike. Di kêliya xwendina doktoraya xwe de bayê helbestîn li ser wê ger dibe û dest bi nivîsandina helbestan dike. Helbestên wî yên destpêkê li Zanîngeha Yêrîvanê têne çapkirin û belavkirin. Şiko, ji bo helbesta kurdî bi henaseyek nû û bi rengekî cûda û şêweyeke nûjen şîrove bike hewl dide xwe. Helbestên wî pêşî di rojnameya Zanîngehê de û dûre jî di rojnameya Rêya Teze de têne weşandin. Her wiha di raydoya Yêrîvanê de jî helbestên wî pir têne xwendin û ji alî gellek kesî ve pir têne hezkirin. Şikoyê Hesen bi vê şêweya helbesta xwe tîna xwe li gellek helbestkar û wêjekarên piştî xwe dike û bi vî awayî di helbesta kurd de rêgeheye nû ku gellek şopgerên xwe diafirîne pêk tîne. Hostehiya helbestkariya wî her wiha bandoreke mezin li ronakbîriya wî jî dike û behredarî û şerezayiya wî bi helbestnûsîna wî re dikele û berz dibe.

**Bengîdarê zimanê kurdî**

Şikoyê Hesen û helbestkarên hevçaxên wî yên Kafkasan, sûdek mezin li wêje û bi taybetî jî li helbesta kurd a Kurdistanê û ya hemû qadên ku kurd lê dijîn dikin. Bi saya ked û xebatên wan, li gel berhemên klasîk ên hosteyên wek Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî û Feqiyê Teyran, her wiha helbestkarên kurd ên hevdem ên wek Cegerxwîn û Osman Sebrî jî daxilî mufredata dibistanên kurdan dibin.

Şikoyê Hesen'ê ku dibe yek ji grîngtirîn helbestkarê wê demê, hemû jiyana wî bi xizaniyê derbas bûye. Ji ber ku bi zorê debara mala xwe dike, nekaribûye piraniya helbestên xwe çap bike. Tê gotin ku Şikoyê Hesen ji ber xizanî û bêderfetiyan, ji bêçarî gellek helbestên xwe frotiye da ku pê debara xwe bike. Ji alî din ve, tê gotin ku hin kesan, bêyî destûrstendina wî, hin helbestên Şiko bi îmzeya xwe çap kirine û ew helbestên wî weke yên xwe nîşan dane. Hin hunermendan helbestên wî bi newa kirine û di albûmên xwe de strandine. Strana Aram Dîgran a bi navê 'Zimanê Kurdî' jî yek ji wan helbestan e.

> Hin hunermend hene ku di dema xwe de şarezayî û bêhempayiya wan nayê têgihîştin û piştî mirina wan ev girîngiyên wan têgihîştin. Lê belê ev jî ji bo helbestkarên kurd rewşeke baş e ku piştre hunera wan bê zanîn û têgihîştin, lewre ên me piştî mirinê jî di bêdengiya malxerab a kurd û kurmanciyê de razan dibin. Şikoyê Hesen yek ji wan hunermendan e ku ne di dema xwe de û ne jî piştî mirina xwe hatiye dîtin. Her çiqas di van salên dawî de berhemên wî bêne çapkirin û lîmetdariya wî li ser rûpelan bê deqkirin jî ev têr nake. Bi vê mebestê me xwes em hinekî qala vî helbestkarê xemgir û dilsoj, qala Şikoyê Hesen bikin.

**Wundabûna ziman ji mirinê xerabtir e**

Sê dîwanên helbestan ên helbestkarê nemir Şikoyê Hesen têne çapkirin. Ji van dîwanan 'Qalçîçek' di sala 1961'an de, 'Tembûrê Kurda' di sala 1966'an de û 'Merêmê Dilê Kurd' jî di sala 1970'an de hatine çapkirin. Her wiha piştî wefata wî pirtûka wî ya bi navê 'Perwaza Welat' jî ji alî bengîdarên Şiko ve tê çapkirin. Di sala 2008'an de bi edîtoriya Tosinê Reşîd, pirtûka ku ji helbestên wî yên bijarte pêk tê ya bi navê 'Payîz û Ba' jî ji alî Weşanxaneya Avestayê ve tê çapkirin.

Ji helbestên Şikoyê Hesen, mirov têdigihîje ku grîngiyeke mezin daye zimanê kurdî. Di helbestên xwe yên ku li ser ziman nivîsiye de, wundabûna ziman ji mirinê xerabtir dinirxîne û her ji bo vê rewşê azara dilê xwe vedibêje. Şikoyê Hesen her çiqas di nav xizaniyê de, jiyaneke zor û bi azar jiyabe jî, tu carî ji bo berjewendiya xwe ya kesane serê xwe li ber tu kes, sazî û dewletî netewandiye û ji ber vê yekê jî, di 1976'an de dawî li jiyana xwe anî ye û xwe kuştiye. Gora Şikoyê Hesen li paytexta Gurcistanê Tiflîsê ye.

Xebatên ziman ên ku helbestkarên nemir ên wek Şikoyê Hesen û gellekên din, bi kedek mezin meşandine, zimanê kurdî hanîne asteke baş. Di van salên dawî de, bayê geşedar ê zimanê kurdî roj bi roj berztir û gelempertir dibe. Ji ber bengîdariya ziman a Helbestkarê Hêja Şikoyê Hesen, em dizanin ku bi geşbûn û berzbûna zimanê kurdî wê ruhê wî ji ew azarên ku di jiyana xwe de ji bo ziman jiyaye, rizgar bibe.



Rojekê keevir li ber lingê min kêlimî
Çiqas rewî, got, bi ser min de likumî
Ez pekandim, gulal kirim anîm vir
Tu çi zanî, gelo sibehê tu yê li kî bî...